Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 73
15'ê Çiriya Pêşîn
Buha: 150 Tûmen

# agirî

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Wêjevanê Mezin Yê Kurd, Mehmet Uzun Çû Ser Dilovaniya Xwe



Heyf û mixabin, seet 11:05'ê roja pêncşem, 11.10.2007'an, rewşenbîrê navdar û wêjevanê mezin yê Kurd, **Mehmet Uzun** li bajarê Amedê çû ser dilovaniya xwe û bo yekcarî xatir ji gel û welatê xwe xwest.

**Peyama sersaxiya Polîtbîroya PDK Îranê Desteya Weşana Agirî di rûpela 2 û 11'an de...**



Bangawaza Partiyên Kurd Û Kurdistanî Ji Bo Bîr Û Raya Giştî:

# "EM NEHÊLİN DEWLETA TURK REWŞA ROJHİLATA NAVÎN ALOZTİR BİKE"

Dewleta Turkiyê xwe ji bo êrşa leşkerî bo nav axa Herêma Kurdistanê amade dike û hêzeke zaf aniye ser sînorên Herêma Kurdistanê û berdewam gefan dixwe.



Serok Wezîrê Turkiyê, Erdoxan got ku Turkiye amade ye ku hemû xisar û bacan bona êrîşa bo nav axa Herêma Kurdistanê bide.

Desthilatdarên Turk dibêjin, ew êrîşa wan ji ber hebûna hêzên PKK'ê li Herêma Kurdistanê ye. Lê weke xuya ye armanca sereke ya dewleta Turk, pêşîgirtina geşkirina ezmûna Kurdistanê ye, ne binke û baregehên PKK'ê. Amerîka û Yekîtiya Ewropayê hişyarî dan Turkiyê ku nabe êrîşê bo ser Herêma Kurdistanê bike.

Qirar e roja sêşem a vê hefteyê Parlamentoya Turkiyê li ser bezandina sînorên Herêma Kurdistanê biryarê bide. 12 Partiyên Kurd û Kurdistanî di daxuyaniyekê de bo raya giştî û rêxistin û komeleyên navneteweyî daxwaz kirin ku nehêlin dewleta Turk rewşa Rojhilata Navîn aloztir bike.

**Daxuyanî di rûpela 3'an de**

Komîsyona Karê Derve Ya Kongressa Amerîkayê

## Pêşniyara Qanûna Jînosayda Ermeniyan Pejirand Pejirandiye

Komîsyona Karê Derve Ya Kongressa Amerîkayê, yasayeke pêşniyarkirî pesend kiriye ku li gor wê, Ermenî di dema Şerê Yekem yê Cîhanî hatine jînosaydkirin. Qanûna pesendkirî ya han têkiliyên navbera Amerîka û Turkiyê bi tirsê re berbirû kirine. Buş bi xurtî hişyarî da Kongressê ku ew yasayê ne pejirîne. Ajansa Nûçeyan a "BBC"yê da zanîn, serbarê helwesta tund ya Turkiyê û gefên Serok Komarê Amerîkayê, egera vê yekê heye ku yasaya jînosaydkirina Ermeniyan di Kongressê de bihê pejirandin ku piraniya wê di destê Partiya Demokrat de ye.



Li sala 1915'an, li ser û bendê Şerê Yekem yê Cîhanî û serhildana Nasyonalîzma Turk, dewleta Osmanî dest da Siyaseta asîmîlekirinê û 1.5 Milyo Ermenî qir kirin.

## Kazim Darabî, BiKujê Dr. Şerefkendî Û Hevalên Wî Serbest Tê Berdan!



Dozgerê Giştî yê Almanya roja pêncşem, 11.10.2007'an da xuyakirin ku ew dê Kazim Darabî, yek ji sebebkarên terora Mîkonosê ya li dijî Dr. Şerefkendî û hevalên wî serbest berdin. Frank Walenta da zanîn ku Darabî 15 sal e di girtîgehê de ye û cezaya wî ya din dê were efûkirin. Qirar e ku di meha dawî ya sala 2007'an were azadkirin.

Kiryareke wiha ji bilî bêhurmetî bi nirx û pirensîpên mirovahiyê û binpêkirina mafên mirovan tu peyameke din peyre tune, lewra divêt rê û derfeta serbestberdana van tawanbarane nehê dayîn û hewl û xebata vê yekê jî were dan ku rêberên rejîma teror û tawanê a Komara Îslamî a Îranê jî wekî biryarderên vê cinayeta terorîstî di dadgeheke navneteweyî de bi cezayên xwe bigihîjin.

## Daxuyaniya Çapemeniyê A Bîroya Nûneriya Derveyî Welat A PDK Îranê Derheq Dijberî Tevî Îdamê Û Biryara Darvekirinê

Roja çarşem,10.10.2007'an, Roja Cîhanî a li dijî cezayê îdamê ye. Di wê rojê de Koma Cîhanî ya li dijî îdamê (World Coalition Cuntres The Death Penalty) pêkhatî ji rêxistinên mafê miorvan di koşka navenda Neteweyên Yekbûyî li bajarê "New York"ê, konferanseke çapemeniyê bi boneya çil sa xebat li dijî rakirina biryara îdamê pêk tînin.

Di heyama 40 salên borî de, 130 welat ji 192 welatên endamê Neteweyên Yekbûyî qanûna fermana îdamê rakirine. Koma Cîhanî li dijî cezaya îdamê, pêşniyarbiryarek ji bo bas û biryardanê di civîna roja 10'ê Çiriya Pêşîn a 2007'an, bi armanca qedexekirina yasaya hukmê îdamê di hemû welatên cîhanê de pêşkêşî Sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî kiriye.

Li sala 2006'an, di 25 welatan de, biryara îdamê birêve çûye ku 11 ji sedê a wan îdaman tenê li 6 welatan hatiye meşandin, ji wan welatan Çîn û Îran di serî de ne. Di navbera sala 2006 û 2007'an, hejmara îdaman li Îranê ji çend salên bihurî zêdetir bûn. Li gorî serhejmariyên fermî, tenê di sala 2006'an, aliyê kêm 215 kes hatine îdamkirin.

Her niha dehan girtiyên siyasî û civakî di reşçalên Komara Îslamî a Îranê de ne ku li benda birêveçûna hukmê îdamê ne. Ji wan kesan em dikarin basa rojnamevanên Kurd, Ednan Hesenpûr û Hîwa Botîmar bikin ku tenê bi tawana Kurdbûnê û berevanî li mafê azadiya raderbirînê ji meha Tîrmeha vere biryara îdamê bi ser wan hatiye birrîn.

Di Roja Cîhanî a li dijî cezayê îdamê, em tevî hevdengî bi hemû rêxistin û kesayetiyan re ji bo rakirina hukmê îdam û daliqandinê, bala civata navneteweyî, rêxistinên mafê mirovan, Neteweyên Yekbûyî û Konseya Ewropayê bo aliyê rewşa dijwar û bixof a mafê mirovan li Îran û Kurdistanê dikişînin û em daxwaz dikin ku bi zext û givaşxistin bo ser wê hikûmetê, pêşiya îdamê yan kuştinên enqest ên dewlet bigire.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Bîroya Derveyî Welat, Parîs – 09.10.2007**

## Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Bona Koça Dawî Ya Mehmet Uzun Sersaxî Da Gelê Kurd

Em pê hesiyan ku mixabin **Mehmet Uzun**, wêjevan û romannivîsê navdar yê Kurd roja pênşem, 11.10.2007'an, bi sedema nexweşiya penceşêrê li bajarê Amedê çû ser dilovaniya xwe.

Meytê wî nemirî roja şemî, 13.102007'an bi beşdariya dehan hezar kesan li bajarê Amedê hate veşartin.

Mehmet Uzun endamekî çeleng ê PEN'a navneteweyî û Yekîtiya Nivîskarên Swêdê bû. Sala 2001'an xelateke mezin ya wêjeyî a wî welatî stand û sala 2005'an jî ji aliyê Wezareta Çandê a Hikûmeta Herêma Kurdistanê hate xelatkirin.

Mehmet Uzun gellek pirtûk nivîsandine ku piraniya wan bi zimanê Kurdî ne û nivîsarên wî bi yek ji pirtûkên herî dewlemend û xurt ên romanên Kurdî û deqên wêjeyî di Zarava Kurmanciya Jorîn ya zimanê Kurdî tên hesibandin.

Bêguman ji destçûna nivîskarekî xwedî şiyan û karîn wekî Mehmet Uzun xisareke mezin ji bo ziman û edebiyata Kurdî bû.

Deftera Siyasî ya PDK Îranê tevî xuyakirina xem û kovanên xwe bon ji destçûna nemir Mehmet Uzun, behî û serxweşiya xwe ji malbata wî a qedirgiran, rewşenbîr û nivîskarên Kurd û hemû neteweya Kurd dike.

**Deftera Siyasî ya PDK Îranê**
**14.10.2007**

## Şandeke PDK Îranê Tevî Şandeke Mezintir A Rêxistina "UNPO"yê Di Civîna Şeşem A Konseya Mafê Mirovan A Neteweyên Yekbûyî De Li Jenevê Beşdarî Kir

Şandeke PDK Îranê pêkhatî ji rêzdaran: **Ebdula Hicab**, nûnerê PDK Îranê li rêxistina "UNPO"yê û **Ako Elyasî** nûnerê PDK Îranê li welatê Swîsê, ji rêya "UNPO"yê ve, rojên 24 û 25'ê Îlona 2007'an, bo cara yekemîn di civîna werzane a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî de li "Cenev"ê beşdarî kir.

Bernameya karê roja 24.09.2007'an a "UN"ê ji bo bas li ser binpêkirina mafê mirovan di welatên cur bi cur de hatibû terxankirin ku di wê beşê de, welatê Portugalê bi nûneriya Yekîtiya Ewropayê, bi eşkere, rejîma Komara Îslamî a Îranê ji ber binpêkirina mafên mirovan şermezar kir û piştre şanda welatên Amerîka, Almaniya, Îngilîstan, Kanada, Swêd û çend welatên din, gellek bi xurtî rejîma Komara Îslamî a Îranê ji ber pêpeskirina mafên mirovan rexne kir. Di vê derbarê de Desteya Nûneriya Hikûmeta Almaniyayê, îdama nêzîk bi 200 kesan di çend mehên derbasbûyî de û derkirina biryara neqanûnî li dijî rojnamevan, cudabîr û kevirbaranê weke mînak anî holê û daxwaz kirin ku bila rayedarên Îranê dawiyê bi binpêkirina berdewam û sîstematîk a mafên mirovan û çewisandina kêmaniyên neteweyî, olî û xebatkarên mafê mirovan bînin. Herwiha wan bi micidî ji Îranê xwestin ku cezayê Îdam û ricimkirinê rake.

Weke hate gotin, welatên han derheq rewşa nebaş a mafên mirovan bi giştî û nemaze di bin zext û givaşxistina Kêmneteweyan, çendîn belge û dokumanterên rast û ne cihê înkarkirinê anîn û daxwaza şirove û rohnkirinê ji rejîma Komara Îslamî a Îranê kirin. Di hember de, Elîriza Muîrî bi nûneriya şanda rejîma Îranê, kevirbaran, girtin û îşkence li Îranê, tevî usûl û pirensîbên Îslamî û yasayên Welayeta Feqîh hevterîb hesibandin. Her di vê çarçoveyê de û derbarê binpêkirina mafê mirovan, rexneyên tund raberî welatên wek Kureya Bakûr, Sûdan, Kuba û Ozbekistanê hatin kirin.

Her di vê derheqê de, rewşa welatên: Îraq, Darfûr û Srî Lankayê jî bûne bi yek ji aliyên mijarên civînên tê yên Konseya Mafê Mirovan ya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî.

Basên roja 25.09.2007'an a civîna demsalî a Konseya Mafê Mirovan a Neteweyên Yekbûyî ji bo bas li ser xebat li dijî nejadperestî û ferq û cudahîdanan û herwiha çawaniya rêvebirina daxuyaniya "Dorban"ê û bernameya piştgiriya UN'ê ji bo mafê xwendinê hatibû terxankirin.

Di dema birêveçûna gerra şeşem a civînên werzî ên Konseya Mafê Mirovan a Neteweyên Yekbûyî li navenda UN'ê li Jenevê, şanda PDK Îranê serbarê beşdarîkirina ser û ber di civînên Rêxistina Neteweyên Yekbûyî û "UNPO"yê de, çendîn hevdîtin tevî sazî û kesayetiyên cur bi cur pêk anî ku li jêr em dê bi kurtî qala wan bikin:

1. Amadekirina nameyekê li ser rewşa mafê mirovan li Îranê û Kurdistana Îranê û pêşkêşkirina wê ji rêya Federasiyona Navneteweyî a Parastina Mafê Kêmaniyên Neteweyî, Olî û zimanê Kêmneteweyên din, bi serokê Konseya Mafê Mirovan neteweyên Yekbûyî.
2. Civîna tevî Rêporterê taybet yê UNê ji bo neteweyên xwecih(bomî) û pêşkêşkirina çendîn dukoment û belgeyên partiyê li ser rewşa mafê mirovan li Kurdistana Îranê.
3. Civiyan û hevdîtin bi nûneriya Jenevê a Fedrasiyona Parastina Mafê Kêmnetewan û şîrovekirina rewşa nebaş a mafê mirovan li Kurdistana Îranê û bi taybet basa girtin û dasepandina cezayê îdamê ji bo **Ednan Hesenpûr** û **Hîva Botîmar** û girtina **Mihemedsidîq Kebûdvend** û daliqandina **Mihemedriza Şucaî Nîko** û xebatkarên din ên hundirê welat.
4. Hevdîtin tevî şandên beşdar di civînên Rêxistina "UNPO"yê
5. Dana nameyê bi birêz **Fîlîp Alston**, Rêporterê taybet li ser îdamê û kuştinên dereqanûnî
6. Hevdîtin tevî Rêxistina "Human Rights Watch"ê
7. Hevdîtina tevî Rêxistina "Geneva Calle"ê
8. Herwiha heta wî cihî ku derfet pêk hatibe, şanda PDK Îranê bi şand û heyetên fermî ên welatên cur bi cur re hevdîtin pêk aniye û ji wan re basa rewşa xirab a mafê mirovan kirin.


**Ako Elyasî û Ebdula Hicab**

Hêjayî gotinê ye, roja yekşem, 23.09.2007'an, li Jenevê di xwenîşandanekê de ku ji aliyê Rêxistina "UNPO"yê ve bona rakişandina bala raya giştî bo ser mafê mirovan li Herêma Xumr Krom li Laosê hatibû organîzekirin, beşek ji endam, alîgir û dostên PDK Îranê li ser daxwaza Komîteya Swîsrayê a partiyê bi awayekî çeleng beşdarî kirin. Hêjayê gotinê ye ku Rêxistina "UNPO"yê her salê ji bo piştevanî ji neteweyek bê welat, xwenîşandanê li dar dixe.

*Bangawaza Partiyên Kurd Û Kurdistanî Ji Bo Bîr Û Raya Giştî:*

# "Em Nehelin Dewleta Turk Rewşa Rojhilata Navîn Aloztir Bike"

Dewleta Turk hinek çalakiyên PKK'ê ji xwe ra kiriye hêcet û mihane û xwe amade dike ku operasyoneka serbazî di axa Kurdistana Başûrê da çê bike.

Partiya Dad û Pêşveçunê (AKP) jî, ji bona vê armanca kirêt, ji Meclîsa Turkiyê daxwaz dike, ku desthilatdarî bidine hikûmetê, daku leşker bişînine Kurdistana Başûrê.

Ji bona bîr û raya giştî eyan e ku armanca dewleta Turk, ne binke û baregehên PKK'ê li Kurdistana Başûr e. Armanca serekî ya dewleta Turk, pêşîgirtina geşkirina Ezmûna Kurdistanê ye.

Generalên Turk gellek caran ragihandine û gotine ku "Hikûmeta Herêma Kurdistanê li ser asayişa netewî ya Turkiyê xeter e." Li gor bîr û baweriya generalên Turk û karbidestên dewleta Turk, dema Kurdan çarenivîsa xwe bi xwe diyar bikin, dibine xeterek li ser Turkiyê!. Ku diyarîkirina mafê çarenivîsê yek ji mafên serekî ya mirovan e û Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî daxwaz û îradeya Kurdên Başûr e.

Hikûmeta Herêma Kurdistanê ne tenê daxwaz û îradeya Kurdên Başûr e, ew her usa di Îraqa Federal da zaminê aramî û aşitiyê ye. Hikûmeta Herêma Kurdistanê tenê destkevta gelê Kurd nine, destkevta hemû hêzên aşitî û azadîxwazên navçeyê ye. Ji bo vê yekê her operasyona leşkerî û her destêverdana



dewletên cîran, ne tenê lêdan û lawazkirina Hikûmeta Herêma Kurdistanê ye, her usa lêdana hêzên aşitîxwaz û azadîxwaz ên navçeyê ye.

Dewleta Turkiyê di wan 25 salên dawiyê da, di axa Kurdistana Başûr de, 24 caran operasyona leşkerî çê kiriye. Lê belê tu caran negihîştiye armanca xwe. Bê guman vê carê jî nagihîje. Operasyona leşkeriya Turkiyê rewşa siyasî ya navçeyê aloztir dike ku îro Navçeya Rojhilata Navîn hewcedarî aramî û asayiş e, ne alozî û tevlihevî.

Guman têda nine ku bandora alozbûna rewşa siyasî ya Rojhilata Navîn, li ser siyaseta cîhanê heye. Ji bona vê yekê;

Em partiyên Kurd û Kurdistanî ji Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, ji Dewletên Yekbûyî ya Amerîka, ji Peymana NATO, ji Yekîtiya Ewropa, ji dezgeh û saziyên mafên mirovan yên navnetewî daxwaz dikin, ku pêşiya operasyona leşkeriya dewleta Turk bigrin;

Em Partiyên Kurd û Kurdistanî ji hêzên demokrat û aşitîxwazên Turk dixwazin ku dengê xwe dijî şerxwaziya dewleta Turk bilind bikin, bibine alîkar û piştgirê Hikumeta Herêma Kurdistanê;

Her di vê demê de, em ji PKK'ê dixwazin ku guhê xwe bide bangawaza Serokê Herêma Kurdistanê, birêz Mesud Barzanî û kar û çalakiyên xwe wisa rê bixe, ku nebe hêcetek destê dagirkerên Kurdistanê.

Em partiyên Kurd û Kurdistanî radigihinin, ku dijî her cure desttevardana dewletên dagirker in di kar û barên hundir ên Kurdistana Başûrê da.

Navên partiyên îmzakirî:

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Partiya Sosyalîsta Kurdistan-PSK**
**Partiya Demokrata Kurdistanê-PDK Bakur**
**Partî Demokratê Kurd Li Sûriyê (El partî)**
**Partiya Pêşverûya Demokrat a Kurd Li Surî**
**Partiya Yekîtiya Demokrat ya Kurd Li Sûriyê**
**Partiya Welatparêzên Demokrat ên Kurdistanê-PWD**
**Partiya Azadî ya Kurd Li Sûriyê**
**Partiya Yekîtiya Kurd Li Sûriyê**
**Rêkevtina Demokrat a Kurd li Sûriyê**
**Partiya Azadiya Kurdistanê-PAK**
**Rêxistina Xebata Kurdistana Îranê**

# Civîneke Berfireh Ji Aliyê YCDK Îranê Ji Bo Rêzdar Mistefa Hicrî, Hate Lidarxistin

Bi armanca baskirin li ser rewşa ciwanan, rola ciwanan di tevgera netewî – demokratîk a gelê Kurd li Kurdistana Îranê û erk û wezîfeyên niha û pêşerojê ên ciwanan çi ne?, roja 05.10.2007'an, seet 15:30'an, Komîsyina Fêrkirin a Yekîtiya Ciwanên Demokrat ên Kurdistana Îranê, di doma xebat û çalakiyên xwe de, civîneke berfireh ji bo rêzdar **Mistefa Hicrî**, Sekdreterê Giştî ê PDK Îranê pêk anî.

Di destpêka civînê de **Dara Natiq**, Sekreterê Giştî yê YCDK Îranê axavtinek kir û di gotinên xwe de tevî xêrhatin kirin ji kekê Mistefa Hicrî û endamên din ên rêberiya PDK Îranê û tev endamên Yekîtiya Ciwanan û mêvanên din, bal kişande ser piştgiriyên berdewam û berfireh ên PDK Îranê ji YCDK Îranê. Wî di axavtina xwe de xuya kir ku YCDK Îranê PDK Îranê wekî rêberê revgera azadîxwaziya neteweya Kurd li Kurdistana Îranê dizane û li ser vê baweriyê ye ku di çarçoveya siyasetên rast û azîn û usûlên dirust ên Partiya Demokrat neteweya Kurd li Kurdistana Îranê dikare bigihîje maf û azadiyên xwe.

Birêz Dara Natiq her wiha qala rewşa kar û çalakiyên vê saziyê piştî kongireya çaran kir.

Piştre rêzdar Mistefa Hicrî civîn bi pîrozkirina dubare a kongireya çaran a YCDK Îranê û her wiha sala nû û xwendinê ji ciwanan re, dest



*Rêzdar Mistefa Hicrî, 05.10.2007*

pê kir. Di destpêka basa xwe de, rêzdar Hircî bi kurtî derheq rola Komara Kurdistanê li nasîna xwestek û daxwazên senfî ên ciwan û jinan axivî ku ji wê demê şûn de PDK Îranê di hemû qonaxên cur bi cur ên xebata xwe de pûte û girîngî daye van du tex û qatên civaka Kurdistanê.

Kekê Mistefa Hicrî anî ziman ku PDK Îranê hemû demekê piştgiriyê ji xebata ev çîn û texên civakê dike û got: "Hemû tex û çîn civakê pêk tînin, em bê wan nekamil in û ew hevdu dikemilînin".

Birêz Mistefa Hicrî di doma axavtina xwe de basek li ser rewşa şoreşa gelên Îranê û beşdariya çeleng û aktîv a ciwanan wek qatek guhertinxwaz a serdem kir û diyar kir ku ciwan hemû demekê yek ji aliyên zext û givaşan li ser desthilatê ne.

Dûre derbarê beşdariya çeleng a ciwanan di xebata neteweyî de got: "Endamên Yekîtiya Ciwanan hergav mil bi milê Pêşmergên PDK Îranê xebat kirine û di vê rêyê de şehîd jî dane...".

Rêzdar Hicrî rola ciwanan di civakê de bilind hesiband û got: "Fikr û ramanên nû di nifşa nû de ne, serkut binpêkirin û neparastina xwestek û daxwazên ciwanan, serkut û çewisandina pêvajoya pêşketin û geşekirina civakê ye".

Di doma axavtina xwe de, birêz Hicrî basek berfirfeh li ser rola ciwanan û rewşa ciwanên Kurdistana Îranê ku îro rastî siyasetên qirêj û şaş ên Komara Îslamî hatine û derfet û fersenda xweperwerdekirin û geşekirina û pêşdeçûnê tu ninin.

Di dawiya axavtina xwe de kekê Mistefa Hicrî daxwaz ji ciwanên azadîxwaz û hişyar ên Kurd kir ku ji bo rizgariya neteweya xwe di bin destê rejîma gemar a Komara Îslamî ya Îranê bi awayekî çeleng û ektîv di xebata neteweyî de beşdariyê bikin.

Di beşa din a civînê de, beşdarên keç û kur bi awayekî çeleng beşdarî basa kekê Mistefa kirin û bi rexne û pêşniyarên xwe civîn bêtir dewlemend kirin û rêzdar Mistefa Hicrî jî bersiva pirsên beşdaran da.

Hêjayî gotinê ye ku di civîna han de, beşeke zaf ji endamên YCDK Îranê li binkeya Deftera Siyasî, kamp û bargehên partiyê û li derveyî partiyê û her wiha xwendekarên Hewlêrê jî beşdar bûn. Civîn seet 18:20'ê êvar bi dawî hat.

# Dîktatorê Biçûk Kê Dixapîne!?

**Şehab Xalidî**
**mencel_senger@yahoo.com**

Mehmûd Ehmedînijad ku bona axavtina di Civata Giştî a Saziya Neteweyên Yekbûyî de seredana "New York"ê kiribû, roja duşembî, 24.09.2007'an li zanîngeha Kolombiyayê de berhev bû da ku li ser helwêstên dirust û mentiqî ên Komara Îslamî a Îranê û herweha li ser azadî, demokrasî û azadiya ramanê di Îranê de peyvekê pêşkêş bike!?.

Lê berî vê ku Ehmedînijad bihê zanîngeha Kolombiyayê, xwendekarên vê zanîngehê nerazîbûna xwe eyan kirin û ragehandin ku nabe ew serkomarê ku bi eşkere Hulukastê ret dike û daxwaza mihkirina Îsraîlê li ser xerîteya cîhanê dike, bihête vê zanîngehê û hitbara zanîngeha me bibe jêr pirsyarê. Lê serbarê dijberiya xwendekaran berpirsê zanîngehê ragehand, bila Ehmedînijad bihê, emê pirsên zehmet û giring lê bikin. Helbet Ehmedînijad daxwaza seredana ciyê bûyera 11'ê Septamberê jî kiribû, lê Şaredarê Nîyoyorkê ragehand: Hatina Ehmedînijad bo vira bê hurmetî bi xelkê vî welatî ye. Çawan dibe yên ku piştevaniyê ji terorîzmê dikin seredana ciyê vê bûyerê bikin? Ev biryara di demekê de bû ku Şaredarê Nîyoyorkê îzna malbatên qurbaniyên bûyera teqîna Navenda Cihûyan li paytexta Arjantînê de dabû ku bi serkomarê xwe re seredana ciyê vê bûyerê bikin û bona hevderdiya bi malbatên qurbaniyên bûyera 11'ê Septamberê, qevdikên gula li ser ciyê vê bûyerê danên.

Berî vê ku Ehmedînijad axavtina xwe li wir dest pê bike, berpirsê zanîngeha Kolombiyayê çû pişt tirîbonê û bi vî awayî Ehmedînijad bi beşdarbûyiyan da naskirin. "Ehmedînijad hulukastê ret dike û daxwaza mihkirina Îsraîlê li ser xerîteya cîhanê dike. Azadiya ramanê di Îranê de tune ye, mafê jinan tê binpêkirin".

Piştî axavtina "Lî Balîncêr" berpirsê zanîngehê, Ehmedînijad çû pişt tirîbonê. Dîsan jî weke hemû carê bas ji azadiya ramanê di Îranê de kir. Herweha got ku ez li bûyera Hulukastê bi şik û guman im. Ehmedînijad herweha di bersîva nûçegihanekî de derheq birêveçûna hukmê îdamê di Îranê de gellek bê şermane got: Di welatê me de tawanbar ji rêya bidarvekirinê ve têne îdamkirin, lê di welatê we de (merema wî Amrîka bû) xelk bi gazê an jî bi lêdana ampûla hewayê têne îdamkirin. Herweha derheq derkirina hukmê îdamê bo du rojnamevanên Kurd got ku haya min ji tiştekî weha tune ye.

Ehmedînijad di demekê de bas ji azadiya ramanê û azadiya kêmaniyên mesebî di Îranê de dike ku rojnamevan, xwendekar, kedkar û mamostayên xwendegehan seba eyankirina bîr û baweriyên xwe, yan daxwaza zêdekirina heqdestê xwe û rexnegirtina ji hikûmetê dikevine jêr îşkenceyên herî hovane ên sedsala navînî. Ehmedînijad ku bas li rêzgirtina ji mafê mirovan dike, her tenê di heyamê mehekî de 41 kes bi destê karbidestên dewleta vî serkomarê adil, mirovdost û xwedîîman! hatine îdamkirin, bi bêy vê yekê ku ew kesana di dadgehekî bêalî û serbixwe de hatibne dadgehîkirin, yan mafê girtina parêzeran ji xwe re hebûbin. Ji bîra me neçe ku di dema şerê Îran û Îraqê de bi hezaran kesî ku seba eyankirina bîr û baweriyên xwe hatibûne girtin, her piştî bidawîhatina vî şerî, bi awayên herî hovane



*Axavtina Ehmedînejad di Neteweyên Yekbûyî de ne tenê alîkarî bi kirîza ku Komara Îslamî ya Îran di qada navneteweyî de tê ketiye nekir Belkî rewşa rejîmê aloztir kir...*

hatne îşkence û îdamkirin. Ew kesên îdamkirî herweha di gorên bikom de dihatne veşartin, û navê ciyê veşartina wan terman jî danîne "Le'inet Abad". Ayetullah Muntezirî di pirtûka bîranînên xwe de dinivîse: Di nava girtiyên li girtîgeha Êvînê de, gellek keç jî hebûn. Min vî çaxî gote Xumêynî ku îdama wan keçan li gora Ola Îslamê ne dirust e. Lê her piştî vê rexneya min, karbidestên hikumetî di girtîgehê de destdirêjiya cinsî kiribûne ser wan keçan da ku bibne jin, û îdama wan li gora Ola Îslamê dirust be û piştre hemû gullebaran kiribûn!?. Belê Ehmedînijad jî azadiya ramanê ji wan erbabên xwe ve hîn bûye, ku wisa bû mirov çi çavnihêriyek ji Ehmedînijad û kirêgirtiyên din hebe.

Herweha di Îranê de serbarê vê yekê ku peyrewên kêmaniyên mesebî bi tundî têne perçiqandin, lê peyrewên mesebê Behayî ne tenê bi fermî nahêne nasîn, belkî ji çûna bo zanîngehan jî bêpar in. Li gora serhejmariyekê ku ji aliyê nivîsîngeha Civaka Navneteweyî a Behayiyan ve belav bûye, di sala 2007'an de, nêzî 369 Behayiyan di ciyên cur bi cur ên Îranê de mafê çûna bo zanîngehan û navendên Perwerdehiya Bilind hebûne ku bi sebebê Behayîbûna wan pêşiya navnivîsandina 191 kesî hatiye girtin. Herweha 70 xwendekar jî ku piştî navnûsiyê û di dema xwendinê de Behayîbûna wan eşkere bûye, li zanîngehan hatine derkirin. Pejirandiya (musewiba) pêşîgirtina ji çûna Behayiyan bo zanîngehan di bervar 25.02.1991'an de ji aliyê Civata Bilind a Şoreşa Çandî ve hatiye derkirin. Di benda 3'ê ya vê pejirandiyê de hatiye: Divêt pêşiya navnûsiya Behayiyan li zanîngehan de bê girtin. Heke Behayîbûna xwendekarekî/ê di dema xwendinê de jî eşkere be, divêt pêşiya xwendina wan bihê girtin.

Ew herweha dibêje ku di Îranê de azadiya takekesî heye û jin jî xwediyê gişt mafekê ne. Lê bas ji vê yekê nake ku wan di gaveke nû de dest bi avakirina "Polîsê Emniyeta Exlaqî" kiriye û polîsê bi nav Ewlekariya Exlaqî, her pêka serhejmariya wan bixwe heya niha karîne ku nêzî 150.000 kesî li seranserî welat de rapêçî girtîgehan bikin. Helbet hewce ye ku em vê yekê jî bêjin ku pênaseya bê exlaqiyê li cem wan eva ye ku jin divêt bi tevahî xwe dapoşin, û mêr jî nabe bi kincên balkêş û milkurt bigerin. Em dikarin bêjin berevajî welatên azad û demokratîk di Îranê de, tenê Xamineyî û Ehmedînijad serwer in, ne yasa!?.

Ehmedînijad derheq bûyera Hulukastê jî dibêje ku divêt li serrast, an jî nerastbûyîna hulukastê lêkolînên zêdetir bêne kirin. Helbet Ehmedînijan Hulukastê bi tevahî ret dike, lê vê carê eva bi qazancê wî bû ku bi vî awayî bipeyive. Ehmedînijad di demekê de bas li lêkolînên pitir li ser vê bûyerê dike ku bi dehan carî dîmenên vê bûyerê li torên televîzyonî ên Îranê de belav bûne.

Ehmedînijad herweha Îsraîlê bi rejîmekî dagirkar dizane û daxwaza rakirina vê li ser topa erdê dike. Ehmedînijad divêt bizane ku xelkê Felestînê Mehmûd Ebbas wekî serokê herêma xwe hilbijartine, ne Ehmedînijad. Xelkê Felestînê bi serokatiya Mehmûd Ebbas dikarin li derheq çarenûsa xwe de bifikirin û biryaran bidin, ne Ehmedînijadê ku ji alîkî ve xwe bi dilsojê xelkê Felestînê dihesibîne û ji alîkî din ve jî bi dana alîkariyên zaf ên malî û leşkerî bi Saziya Hemasê, vê saziyê dijberî Îsraîlê weha tûj dike ku nabe heya hilweşandina Îsraîlê desta ji xebatê bikêşin, û bi vî awayî bixwe mezintirîn asteng in li hember aştiya di navbera her du wlatan de. Herweha Ehmedînijad di demekê de bas ji nehêlana Îsraîlê li ser xerîteya erdnîgariya cîhanê dike ku welatên Erebî bixwe hatine ser vê baweriyê ku dijberiya Îsraîlê nekin. Şeş welatan di hinek waran de bi Îsraîlê re têkilî hene, du welatan jî têkiliyên berdewam bi Îsraîlê re hene.

Ku wisa bû ev hemû vir û derew, û gefên Ehmedînijad ne tenê temenê hikumeta wî dirêj nakin, belku berev hiloşînê nêzîktir dikin. Zalim qet sernakevin, renge bo heyamekî kurt an dirêj bikarin gelan biperçiqînin, lê dawiya temenê dîktatoran her şikest û têkçûn e û serkevtin ya azadîxwazên rastîn e. Lewra divêt Ehmedînijad jî ji vê yekê xatircem be ku qedera wî ji qedera dîktatorên mîna Hîtlêr, Mosolînî, Pînoşe, Seddam û Mîlîsovîç baştir nabe.

# Guhertinên Rûyekî DêTurkiyê Ber Bi Kuderê Bibin?

**Azad Kurdî**
**azadkurdi@hotmail.com**

Li gorî qanûna bingehîn a Turkiyê, mafê perwerdehiya fermî tenê bi zimanê Turkî azad e û xwendin û nivîsandin bi zimanên din qedexe ye. Çi beriya hilbijartinan û çi piştî serkevtin di hilbijartinan de, rêberên AKP'ê soza pêkanîna guhertinan di yasayên Turkiyê de anîn rojevê.

Cemîl Çîçek, Cîgirê Serok Wezîrê Turkiyê, roja 22'ê Îlona 2007'an, di daxuyaniyeke çapemeniyê de xuya kir ku ji bilî 3 eslên yekem ên Zagona bingehîn a Turkiyê ku li ser sîstema Sekolarbûna wî welatî tekezê dikin, em dikarin hemû bendên din yên wê qanûnê biguherînin.

Çîçek demekê ev gotin anîn ziman ku rêveberên partiya desthilatdar (AKP) li ser pêkanîna reform û guhertinan di qanûna bingehîn a Turkiyê de civiyan.

Di encama karê wê civînê, AKP'ê pêşniyara yasaya bingehîn a nû ya Turkiyê xiste rojevê ku têde bêy wê ku rasterast navek ji zimanê Kurdî hatibe birin, bi awayekî ne fermî perwerde bi zimanên xeyrî Turkî serbest îlan kiriye. Li gor norm û pirensîpên civakên demokratîk, pêkanîna guhertinan di hemû warên têkildar bi jiyana civakê û nemaze di warê yasa û qanûnan de, tiştek normal û xwezayî ye û dikare mekanîzmek ji bo geşekirin, pêşdeçûn û nûbûnê be. Lê di vê navberê de xala balkêş û ecêb ew awayê guhertinan in ku di welatên Rojhilata Navîn de bi giştî tê dîtin. Pêşnivîsa qanûna bingehîn a nû ya dewleta Turkiyê, mînakek ji wan guhertinên rûyekî ye.

Her çiqas ji bo berhevkirina vê reşnivîsa nû a qanûna bingehîn a Turkiyê, ji pêşnivîsa pêşniyarkirî a komek Parêzerên Turk û herwiha Yasaya bingehîn a Yekîtiya Ewropayê mifah hatiye standin, lê ji me re xuya dibe ku li benda derbarê azadiya nivîsîn û xwendin bi zimanê Kurdî, lêlî û nerohnî û ruha ret, înkarkirin û parêzkariyê tê de tê xuyakirin. Di pêşnivîsa nû a dewleta AKP'ê de, navê perwerde û mafê xwendin û nivîsandin bi zimanê Kurdî bi fermî nahê anîn û ne jî rasterast tê baskirin. Ji ber ku pirsa perwerdeyî û xwendin bi zimanê Kurdî bi awayekî rasterast bi doza neteweyî û beşek ji mafên gelê Kurd li Turkiyê têkildar e. Amadekarê pêşnivîsa nû ji neanîna navê zimanê Kurdî weke zimanê neteweyeke xwedî nasnameya xwe a taybet, xwe parastin û diparêzin û ew rastî zêdetir derdikeve holê ku derheq pirsgirêka Kurd û mafên Kurdan li Turkiyê, hemû partî û aliyên dewletê bi hev re hevbîr û ra ne.

Di halekê de ku gellek karnas û pisporên warê siyasî du serkevtinên dû hev ên AKP'ê li hemberî hêzên Nasyonalîst, Arteşî û Çepên Nijadperest ên vî welat weke destpêka qonaxeke nû a siyasî li Turkiyê dihesibînin, lê ev partî û rêveberên wê navêrin tevî eniya Nijadperest û bîrteng û înkara Kurdan rû bi rû bibin û di ceribîna nû a guhertinan de serkevtî derbas nebû? Ji sala 1982'an ve, tu guhertin di qanûna bingehîn a Turkiyê de çê nebûne û



piraniya pirsgirêkên hundirîn û derve ku Turkiyê pêre dinale, ji van zagonên neguher çavkanî digire.

Li gor ramanên Nijadperestane ên rayedarên Turkiyê, anîna berbasa her cure maf û azadiyeke neteweyî ji bo Kurdan bezandina hêlên sor ên vî welatî tên hesibandin û ceza û tawan herî dijwar û giran li Turkiyê bo wan kesan tê diyarîkirin. Eva di demekê de ye ku nifûsa neteweya Kurd li Turkiyê bêtirî 25 milyon kesan e û binpêkirina maf û azadiyên Kurdan li Turkiyê berdewam dikeve ber rexneyên tund. Yekîtiya Ewropayê derbarê wergirtina Turkiyê ji bo endambûn di vê saziyê de doza parastina mafên mirovî û demokratîk ên Kurdan dike û çaresernekirina pirsa Kurd weke astengeke mezin a endambûna vî welatî dizane û ji berpirsiyarên Turkiyê re didin xuyakirin.

Îtirafkirina Erdoxan bi doza Kurd û hinek soz û cehd û bizavên rûyekî ên bi vî awayî, nikarin tu xizmetekê bi çareserkirina pirsgirêka herî mezin a Turkiyê, yanî doza Kurd bikin. Girîng guherandina bîr û hizrên teng û nasyonalîstî ên eniya hêzên neteweyî û Arteşiyên wî welatî ye ku pêşiya tev pêvajoyeke reformîstî li Turkiyê girtiye. Hêj pêşnivîsa nû a dewleta desthilardar a Turkiyê ji bo qanûna bingehîn a vî welatî bi tevahî pêşkêşî Parlemantoyê nehatiye kirin, demdest Denîz Baykalê Sekreterê CHP'ê helwesta xwe bi vî awayî da zanîn ku azadiya xwendin û nivîsandin bi zimanê Kurdî dibe sedema parvebûna Turkiyê! û ev welate dê rastî qedereke weke Yûgoslavyayê bihê. Herwiha berpirsiyarên Arteşê jî bi tundî dijberiya xwe di vî warî de dan xuyakirin.

Gelo bi vê lojîk û mentelîtayê, Turkiye dê çawa bikare bi van cure gavên rûyekî guhertinan di çarçoveya siyaseta xwe de pêk bîne û pêşde biçe, di çaxekê de ku Turkiye bi hemû hêz û şiyana xwe dihewilîne bibe endamê YE'ê, Yekîtiya Ewropayê jî daxwaza pêkanîna reform û guhertinên kûr û berfireh di asta sîstem, qanûn û zagonên Turkiyê di vî welatî de ye. Take rêya pêwîst, guherîna bîr û ramanên hêzên rêveberên Turkiyê ên bîrtesk û nijadperest ên wî welatî ye ku astenga herî mezin li ser rêya çareseriya demokratîk û aştiyan û hemdemî a pirsgirêkên Turkiyê ye.

Di serdemê îro de ku hemû tişt mijûl e ser û bin dibe û ser li nû darêtin û tev çarçove û rêbazên kevn û paşvero şekl û awayên nû û nûjen bi xwe ve digirin, hewce dike desthilatdarên Turkiyê jî çi din bi vî awayî tevî Kurdan û pirsgirêka Kurd tevnegerin, ji ber ku doza Kurd yê bûye pirseke navneteweyî û gavên rûyekî ên Turkiyê ku heya niha jî înkara hebûna 25 milyon Kurdan di vî welatî de dikin, nikarin bibin alîkar û pirsa demokrasiyê li Turkiyê çareser nakin.

## Du Xebatkarên Kurd Hatin Şehîdkirin

Li gor agahiyên Navenda Nûçeyan ya PDK Îranê, roja çarşem, 10.10.2007'an, du tekoşerên Kurd û endamên nepenî yên PDK Îranê, bi navên **Kiyûmers** û **Nadir Mihemedî**, bi buxtana kuştina Fermanderekî xwefiroş û bikukjê du şehîdên Kurd û Pêşmergeyên PDK Îranê bi navê **Hejar Rizayî** û **Şemsedîn Rostemî** ji aliyê bikujên rejîma Îslamî a Îranê ve di girtîgeha Şaredariya Sine de hatin lidarvekirin.

Şehîd Kiyûmers heya demên dawiya jiyanê, dirûşmên **bijî PDK Îranê** û **silav li Dr. Qasimlo** didan. Şehîdbûna van du xebatkar û qehremanan, kovanekî zaf xiste nava dilê xelkê bajarê Sine û bi taybetî xelkê gundê Şiyanê.

Em bi vê hincetê serxweşiyê ji malbat û kes û karên şehîd Kiyûmers û Nadir Mimemedî dikin û xwe di xem û kovanên wan de beşdar dizanin.

Riha wan şad û rêya wan pir rêvîng be.

## Wexera Dawiyê Ya Pêşmergeyekî Kevnar Ê PDK Îranê



Roja 18.07.1386(10.10. 2007)'an, **Mam Tahir Rehmanî**, Pêşmergeyê kevnar ê PDK Îranê bi sedema nexweşiyê çû ber dilovaniya xwe.

Mam Tahir xelkê gundê "Derehecîc" a herêma Hewramanê bû ku piraniya temenê tejî fexr û şanazî ê xwe di rêya bidestveanîna mafên gelê Kurd de, bidawî anî.

Mam Tahir di salên 1342 – 1343(1963 – 1964)'an de, tevî PDK Îranê pêwendî girt û weke endamekî nepenî li devera Nodşe a Hewramanê, dest avête xebatê. Hêjayî gotinê ye ku Mam Tahir weke Pêşmerge di şoreşa Eylolê de jî beşdarî kiriye.

Piştî şoreşa gelên Îranê û îlankirina xebata eşkere ji aliyê PDK Îranê ve, Mam Tahir tevî take kurê xwe di nava refên partiyê de xebata xwe destpê kiriye û di hemaya 28 salan xebata PDK Îranê li dijî rejîma Komara Îslamî a Îranê, weke Pêşmergeyekî biemeg erkên partiyê bicî dianîn.

Bi hinceta wexera dawiyê a Mam Tahir, em serxweşiyê ji malbat û hevlên Mam Tahir dikin û xwe di kul û kovanên wan de bi şirîk dizanin.



# MILETÊ KURD LI SÛRIYA Û PIROJEYA HEJMARTINA 1962'AN

ELÎ ŞEMDÎN

***Silêmaniyê - 05.10.2007***

Piştî herifandina Împiratoriya Osmanî û pêkhatina peymana ( Saykis-Pîko ) ku Kurdistan da parçekirin, ji wê demê ve parçek ji miletê Kurd kete ber sînorê dewleta Sûriyê de û Kurd bûne hemwelatiyên Sûrî û nasnama wê wergirtin, lê mixabin rêjîmên Sûrî yên şovînî hertim Kurd xerîb didîtin û digotin ew ji derve hatine û dixwazin welat parçe bikin û Îsraîla duyem ava bikin û digotin Kurd xeter in li ser ewlekariya welêt, û li ser bingeha vê nêrîna şovînî û nijadperestî ya partiya Bees ji 1946'an ve her xwestiye vî miletî ji kok ve bide birrîn û barkirin da ku demografiya herêmên Kurdî li Sûriyê( Koban, Efrîn û Cezîrê) bide guhertin, bi riya pêkanîna zincîrek dirêj ji pirojeyên rûreş ku dane meşandin dijî netewa Kurd li Sûriyê. Di pêşiya wan pirojeyan de, piroja **Hejmartina 1962'an** ku îsal **45** sal li ser pêkanîna wê re derbas dibin.

Ne veşartiye ku herêma Cezîrê (Parêzgeha Hesekê) mezintirîn parêzgeha Sûriyê ye, bi piraniya xelkê xwe ve **80%** Kurd in û dikeve bakur û bareşê Sûriyê de li ser sînorê Turkiye û Îraqê. Gellekî zengîn e bi petrol û genim û pembûyê xwe û ji ber vê yekê şovîniyên Ereb di desthilatên Sûriyê de her û her xwestine xelkê vê herêmê yên Kurd bidin guhertin û barkirin û xelkên ereb têxin şûna wan, lewma ew nezan û birçî kirine û zulm û zor li wan dijwar kirine da ku wan bidin barkirin. Di vê derbarê de, sala 1961'an Efserekî ewlekariyê bi navê ***Mihemed Teleb Hilal*** li Cezîrê hebû, lêkolînek nivîsîbû li ser herêma Cezîrê di warên: siyasî, civakî û aborî de. Di nivîsa han de **12** pêşniyar pêşkêşî desthilata xwe kiribûn ku çawa Kurdan bide helandin, erebkirin, birçîkirin, barkirin û herweha sitandina nasnamê jî yek ji wan pêşniyarên wî yê rûreş bû.

Rêjîma Sûriya şovînî di 05.10.1962'an de, li Cezîrî bêdeng hejmartinek awarte û taybet li herêma Cezîrê pêk anî û bêtir ji **120 000** hemwelatiyên Kurd bê regezname hiştibûn û nasnama wan ji wan kişandibûn, û bi yek imzê ew di welatê wan de xerîb hiştibûn, tenê ji ber ku bi netewa xwe Kurd bûn û bi vê pîlanê deriyê jiyanê li ber wan hate girtin; bê kar û xwendin, bê qad, bê dekomentên hemwelatiyan ku bikaribin derkevin derevî welat yan li otêlan rakevin yan jî mal û milk û mewdanên xwe li ser navê xwe binivîsin û tapo bikin. Her wiha jî nikarin jin û zarokên xwe jî bi rengekî asayî li ser xwe binivîsin û ji dengdan û hilbijartinên perlemanî dûr man û mafê dengdanê bi wan re tune ye.

Bi rastî div, bê gotin ku ev pirsgirêk roj bi roj xerab û dijwartir dibe û jiyana rojane ya Kurdên bênasname asê û nexweştir dibe û jimara wan sal bi sal pirtir dibe. Heta ku îro hejmara Kurdên bênasname gihiştiye nêzîka nîv milyonî. Di van 45 salan de, ji ber ku zarokên kesên bênasname, ew jî bênasname dimînin û di vî warî de pêwîst e bihê şirovekirin ku ev kes du nifş in, yek ji wan di 1962'an de nasname ji wan hatiye sitandin, ew bi navê **Ecanibên Hesekê** tên binavkirin, navê wan di lîsta bênasnaman de heye û dewlet dukomenteke sor dide wan tenê ji bo pênasînê. Beşa din ewên ku nasname jî ji wan hatiye sitandin û dukument jî ji wan re tune ye, ew bi navê **Mektûman** têne naskirin.

Nahê veşartin ku li dijî vê pirojeya xerab û kirêt tevgera Kurdî li Sûriyê xebatek bêrawestan berdewam kiriye ji bo çareserkirina vê pirsgirêkê û vegerandina nasnamê li xwediyên wê ku bikaribin jiyana xwe bê astengî berdewam bikin, û tevgerê ev siyaseta şovînî li ber raya giştî bi berdewamî pirotesto û tazî kiriye û li cem hêz û rêxistinên mafê mirov û yên berevaniya demokrasiyê dikin, çi yên Sûrî û çi jî yên navdewletî û ji wan hêzan xwestiye ku piştgiriya neteweya Kurd bikin li dijî vê zincîra dirêj ji pirojeyên şovînî yên ku partiya Bees a Sûriyê bi xurtî li herêmên Kurdî li Sûriyê dide meşandin û pêkanîn, lê mixabin heta îro dengê van hêzan ji aliyê desthilata Sûrî ve nehatiye bihîstin, ku çavê xwe ji vê rastiyê digre û guhê xwe jî digre li ber qîrîna van kesên bindest ku doza mafê xwe yê mirovî yê herî piçûk dikin, mafê nasnamê. Di van 45 salan de, tenê sozên derew ji desthilata rêjîmê bihîstine û Serok Komarê Sûriyê jî çend caran gotiya rast e, ev piroje pîs e û soz daye ku demek nêzîk wê çareser bike. Cara dawî, mehekê berî niha di Parlemanê de gotiye, lê ewî jî ta niha sozên xwe bicî nekiriye.

Di vê bibîranînê de, bîranîna salvegera pêkanîna hejmartina awarte ku di 1962'an de li parêzgeha Hesekê li dijî Kurdan hatiye pêkanîn ku di seranserê van 45 salan de berdewam e, em dubare vê piroja rûreş pirotesto dikin û banga raya giştî dikin ku li dijî bisekine û zorê li rêjîma Sûrî bikin ku vê pirsgirêkê çareser bike û nasnama wan li wan vegerîne, ku ew jî wek hemwelatiyên din jiyana xwe di welatê xwe de bê astengî berdewam bikin ..

# Li Qamişloyê Serjimartina Awarte Hate Protestokirin



Bi helkefta 45-saliya Serjimartina Awarte li Kurdistana Suriyê, roja 05.10.2007'an, li Qamişloyê hejmareke mezin ji welatiyên kurd xwenîşandaneke protestoyê ya aştiyane li dar xist. Piraniya kesên amade ji Kurdên bênifûs bûn, ku goriyên siyaseta rêjîma Sûriyê ya stendina nasnameyên Sûriyê ji welatiyên kurd in. Xwepêşanderan ji rêjîma Sûriyê doza vegerandina nasnameyên Sûriyê bo bêtirî ji 300 hezar welatiyên kurd kir. Wan herweha doza "çareserkirineke dadmendyane" ji Pirsa Kurdî li Sûriyê re kir. Sê partiyên Kurdî bangî vê çalakiyê kiribûn. Îroj berî 45 salan, di 05.10.1962'an de, li hemû bajarên kurdî li parêzgeha Hisiçayê nasnameyên Sûrî ji dora 150 hezar welatiyên kurd hatin stendin. Ev kes ta roja îroj bê nasname ne û ji gellek mafên welatiyan bêpar mane. Hejmara mezin ji van welatatiyan wekî welatiyên "ejnebî", ango "biyanî", ne. Hinên dî jî "mektum" in. Kesên "mektum" zarokên an dêyek kurd a "ejnebî" yan jî bavek kurd ê "ejnebî" ne. Rêjîma Sûriyê û serokê wê Beşar el-Esed gellek caran soza çareserkirina vê pirsê dane, lê ta niha sozên xwe bi cî neanîne. Partiyên "Komîteya Tensîqê ya Kurdî", ku ji Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê, Partiya Azadî ya Kurd li Sûriyê û Şerpêla Pêşerojê ya Kurd li Sûriyê pêk tê, bangî xwenîşandana li Qamişloyê kiribûn. Di vê çalakiyê de gelek dirûşm hatibûn hildan û bangkirin, hin ji wan ev bûn:

- Ber bi Sûriyek demokratyane û bê cudabûna regezperest ve;
- Divê Girtiyên siyasî di zindanên Sûriyê de serbest bêne berdan;
- Divê Serjimartina Awarte li Cezîrê bête rakirin
- Divê Kembera Erebî li Cezîrê û bi taybetî li Dêrikê û Serê Kaniyê û herêmên kurdî yên dî bête rakirin;
- Bijî Yekîtiya gelê kurd.

Partiyên kurdî yên dî di daxuyaniyan de Serjimartina Awrate protesto kir û ji rêjîma Sûriyê doza bidawîanîna vê siyasetê û vegerandina nasnameyan ji bo welatiyên kurd kir.

**Nûçe ji "*amude.com*" *hatiye wergirtin***

# 10'ê Octobrê Û Domkirina Îdamê Li Îranê

**Hemîd Muxtarî**

Roja 10'ê Çiriya Pêşîn, salvegera xebat li dijî îdamê ye. Îro rojê di gellek welatan de biryara daliqandinê hatiye rakirin û welat ber bi demokrasiyê diçin. Lê mixabin îdamkirina mirovan bixasmanî zarokên bin 18 saliyê de heya niha jî di hin welatan de dom dike

Li gor serhejmariya sala 2006'an, tenê di 25 welatan de cezayê îdamê birêve çûye û %91 ji van daliqandinan tenê di 6 welatan de hatiye encamdan, ku Îran yek ji wan welatan e.

Diyare ne tenê Îran di nava wan welatan de ye, belkî îsal cezayên lidarvekirinê di Îranê bin desthilatdariya rejîma Komara Îslamî de zêdebûnek berçav bi xwe ve dîtiye. Bêtir ji 210 kesan di dema wan 9 mehên borî de hatine daliqandin. Di meha borî de di doma rojekê de 21 kes li ber çavên xelkê , di şeqam û cihên giştî de hatine darvekirin.

Herçend ku rejîma Îranê yek ji wan rejîman e ku dijberiya xwe tevî dana biryara îdamê derheq zarokên jêr 18 saliyê de nîşan dide û Carnameya mafê zarokan pejirandiye, lê heta rehmê bi wan jî nake û mixabin em dibînin ku di girtîgehên Komara Îslamî ya Îranê de zaf zarokên bin 18 saliyê de hene ku bi sûçên cur bi cur cezaya îdamê bi ser wan de hatiye sepandin û li benda wê rojê ne ku bibin 18 salî û herin bin dara îdamê. Rojek ku di piraniya welatên pêşkevtî û demokrat yên cîhanê de zarok bona girtina cejna ji dayîkbûna xwe û vexwendina hevalên xwe û derbaskirina rojek pir xweş benda vê rojê dikişînin. Lê zarokên Îranê ên di girtîgehê de berevajî vê yekê ne, ew ji rojeke han ditirsin. Ji ber ku roja dawiya jiyana wan e û li ciyê girtina cejnê divê xatira xwe ji dayîk û bav, xûşk û bira, kes û kar û hevalên xwe bixwaze û herin bin darê îdamê.



Rejîma Îslamî a Îranê bi birêvebirina siyaseta kuştina bi enqest û girtina canê zarokên xelkê, bi hezaran malbatan xembar û reşpoş dike û zêdetir raya giştî a cîhanê bi dijî xwe han dide.

Di rastî de piraniya ew kesên ku di bin desthilatdariya rejîma Komara Îslamî de tên daliqandin, mirovên azadîxwaz, xebatkar, rewşenbîr û welatperwer in ku rejîma Îranê wan weke mirovên rezîl û bêbiha binav dike, da ku hem bikaribe neyarên xwe yên siyasî ji nav bibe û tirs û xofê bixwe di nava dilê xelkê Îranê û hem bi xapandina raya giştî ya cîhanê wiha bide nîşandan ku di Îranê de neyarên siyasî tune û xelkê Îranê azad in û hemû rejîma Komara Îslamî ya Îranê dipejirînin

Her di vê derheqê de, roja 24'ê Îlona 2007'an de, **Mehmûd Ehmedînijad**, Serok Komarê rejîma Komara Îslamî a Îranê, di Konferanseke Çapemeniyê de ku li ser daxwaza "**KLOP PIRS**"ya Amerîkayê li bajarê "**NEW YORK**" ê hate lidarxistin, got: "xelkê Îranê xelkê herî azad yê cîhanê ye". Lê bi rastî wiha ye? Xelkê Îranê azad e? Gelo heta çawaniya lixwekirinê ji bo jin û mêran ji aliyê rejîma Komara Îslamî tê diyarîkrin. Roj nine ku kes seba eyankirina raya xwe nehê daliqandin yan nehê girtin. Her li dirêjahiya salekê pitir ji 73 rojnamevan di Îranê de hatine girtin û pitir ji 20 weşan hatine daxistin, bi sedan kes ji xelkê sivîl li ber çavên xelkê hatine daliqandin. Her niha 2 ciwanên rojnamevan yên Kurd bi navên "**Hîwa Botîmar** û **Ednan Hesenpûr** bi buxtana "Moharibe" (dijberîkirin bi xwedê re), ji aliyê Dadgeha Şoreşa Merîwanê, bi cezayê îdamê hatine mehkûmkirin û niha di girtîgeha bajarê Sine de li benda birêveçûna biryara îdamê ne û rewşa ruhî û cismî ya wan pirr xirab û dijwar e.

Di rastî de cezaya van du ciwanan tenê eyankirina raya wan bû ku ew tûşî cezaya han ya giran kirin. Eva ew azadiya ye ku birêz Ehmedînejad qala vê dike!

Em carek din daxwazê ji hemû mirovên azadîxwaz û mirovhez û saziyên mafê mirovan û "**NGO**"yên çeleng di vê warê de dikin ku bi xistina zext û givaşan bo ser rejîmê canê van du ciwan û sedan ciwanên din ji destê rejîma Komara Îslamî ya Îranê de rizgar bikin û di pêşveçûna pirosesa demokrasî di Îranê de piştevaniyê ji neteweyên azadîxwaz yên Îranê bikin.

**Daxuyaniya Çapemeniyê A RMMK:**

# Bi Hinceta 10'ê Oktoberê, Roja Cîhanî A Xebat Li Dijî Îdamê

Di halekê de ku asta birêveçûna îdamê di piraniya welatên cîhanê de jêrde hatiye û hejmara welatên ku biryara îdamê di yasayên xwe de nahêlin zêde dibin, mixabin di Îranê de bi terzeke cihê nigeraniyê biryara daliqandinê tê birêvebirin. Bi awayekê ku aliyê kêm 210 kes tenê di doma 10 mehan de bi sedemên cur bi cur hatine îdamkirin û hejmareke zaf jî li benda birêveçûna biryara îdamê ne. Di vê navberê de her çiqas ku rejîma Komara Îslamî ya Îranê Carnameya Mafê Zarokan di sala 1994'an, de îmza kiriye, lê rejîma Îslamî a Îranê derheq îdamkirina zarokan di cîhanê de xwediyê pileya yekem e û pitir ji 70 zarok di girtîgehên rejîma Îslamî ya Îranê de li benda lidarvekirinê ne.

Girtiyên din ku bi cezaya îdamê tên mehkûmkirin, xwediyê sûçên cur bi cur in. Di mehên borî de piştî birêveçûna gelaleya parastina ewlehiya civakî di Îranê de, dehan kes ji xelkê Îranê li bin navê mirovên rezîl û bêbiha li ber çavên xelkê hatin daliqandin. Ew kes ji hebûna Parêzeran bêpar bûn û dadgehên neeşkere di heyameke kurt de û bê vê çendê ku îzn û derfetên berevanîkirinê bide kesên sûçbar, biryara îdamkirina wan derxist û tê gotin ku kesên sûçbar berî daliqandinê bi terzeke nemirovane hatine îşkencekirin.




Ji aliyekî din ve li Kurdistanê, Dadgeha Şoreş ya bajarê Merîwanê **Ednan Hesenpûr** û **Hîwa Botîmar**, du hevwelatiyên Merîwanî, bi buxtana "Muharibe" (dijberî tevî xwedê) bi îdamê mehkûm kiriye û niha dosya wan bo Dadgeha Bilind ya Îranê hatiye şandin da ku biryara dawiyê li ser vê biryarê bê dan.

Rêxistina Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê di Roja Cîhanî a Xebat li Dijî Îdamê, bi tundî dijberiya xwe tevî birêveçûna biryara daliqandinê eşkere dike û bi giştî îdamkirina xelkê bi her sûçekê û di her temenekê de be mehkûm dike û bi kiryareke ne mirovane dihesibîne.

Herwiha em daxwazkarê ji holê rakirina biryara îdamê derheq Ednan Hesenpûr û Hîwa Botîmar in ku niha di girtîgeha bajarê Sine de ne.

Em daxwazê ji Dezgeha Dadê ya Komara Îslamî ya Îranê dikin ku di dema herî zû de pêşî ji birêveçûna biryara îdamê di Îranê de bigire û bi rakirina biryara han di yasayên cezayên kesên sûçbar de, rêz û hurmetê ji bo mafê mirovan û Danezana Gerdûnî ya Mafê Mirovan bigirin.

**Rêxistina Parastina Mafên Mirovan li Kurdistanê**
**10.10.2007**

# Rapora Sala 2007'an Ya Îdamê Di Îranê De



Bi hinceta 10'ê "Octobêr"ê Roja cîhanî a xebat li dijî îdamê û eşkerekirina ew daliqandin û binpêkirina berfireh ya mafê mirovan di Îranê de, çalakên Îranê yên Parêzerên Mafê Mirovan li Ewropa û Amerîkaya Bakûr, rapora xwe ya salane derheq rewşa îdamkirinê di Îranê de bi awayê jêrîn pêşkêşî raya giştî dike:

Rapora han nav û nîşanên wan kesan bi xwe ve digire ku li heyamê Çiriya Pêşîn a sala 2006'an, heya Îlona 2007'an, di Îranê de yan bi îdamê hatine mehkûmkirin yan hatine daliqandin. Agahiyên hatî di vê raporê de bi giştî li gor agahiyên nûçegehanan, rojname, malperên nûçegehanî yên cur bi cur di hundirê Îranê û herwiha hejmarek ji çavkaniyên derveyî welat e. Bi li berçavgirtina sansorên heyî li ser nûçeyan û jêderên hundirê Îranê, nûçeyên derheq kesên daliqî di Îranê de nahên weşandin yan bi kêmî tên weşandin, lewra rapora han tenê beşek ji wan kesên daliqî yan li benda îdamê di Îranê de bi xwe ve girtiye.

Rapora berbest du lîsteyan bixwe ve digire.

1-Lîsteya kesên îsambûyî

2-Lîsteya kesên li benda birêveçûna biryara îdamê ne

**Lîsteya hejmara yek**:

Li gor lîsteya han bi giştî biryara li darvekirina 265 kesan di heyama 10 mehên borî de hatiye birêvebirin ku li gor sala borî %140 jorde çûye.

-3 kes ji wan jin in.

-34 kes ji wan girtiyên siyasî bûne ku hejmara wan 6 hemberî sala borî ye.

-Îdamkirina li ber çavê xelkê, li gor sala borî 2 qat zêde bûye.

-Yek ji kesên mehkûmbûyî bi îdamê li ber çavên xelkê hatiye berbarankirin.

-Temenê 77 kes ji wan mirovên lidarvekirî ku di vê raporê de hatiye, bi vî awayî ye: 47 kes ji wan 30 salî bûne û 30 kes ji wan temenê jordeyî 30 saliyê hebûne. Kesê îdambûyî yê herî kal û bi temen, 65 salî bûye.

-Agahî derheq 57 kes ji wan, bi terzekî nekemilî berdest e.

**Lîsteya hejmar du:**

Li gor lîsteya han, 218 kes li benda lidarvekirinê ne. Herwiha li gor agahiyên ketî berdest, biryara daliqandina 39 kesên din ku di salên borî de biryara îdamê derheq wan hatibû dan, carek din ji aliyê Dîwana Dada Bilind ya Îranê hate pejirandin. Hêjayê gotinê ye ku navê van kesan di vê Lîsteyê de ber dest nine.

Hejmara dana biryara îdamê li gor sala borî %60 jorde çûye.

-11 kes bi kevirbaranê (recimkirinê) hatine mehkûmkirin.

-26 kes ji wan jin in.

-5 kes girtiyên siyasî ne.

-Li gor agahiyên berdest, temenê 98 kes ji wan bi vî awayî ye:

4 kes ji wan jêr 18 saliyê ne, 63 kes di nava 18 heya 30 saliyê de ne û 31 kes ji wan jordeyî 30 saliyî ne. Hêjayê gotinê ye ku 7 kes ji wan li dema encamdana cezayê, di bin 18 saliyê de bûne.

-Agahî derheq 76 kes ji wan, bi awayekî nekemilî ye.

**Çalakên Îranê yên Parêzerê Mafê Mirovan li Ewropa û Amerîkaya Bakûr**
**10.10.2007**

# Xelata Azadiya Rojnamevaniyê A Îtaliyayê Bi Her Du Rojnamevanên Girtî Ên Kurd Li Kurdistana Rojhilatê Hate Dayîn

Rêxistina Ragihandin û Ewlehiya Rojnamevanan li Îtaliyayê, ragehand ku xelata îsal a **Azadiya Rojnamevaniyê a Îtaliyayê** bi her du rojnamevanên girtî ên Kurdistana Rojhilat, bi navên Ednan Hesenpûr û Hîwa Bitîmar tê dan ku çend mehan berî niha rejîma Komara Îslamî a Îranê biryara daliqandinê bi ser wan de sepandiye.



Xelata Azadiya Rojnamevanî a Îtaliyayê ku ji bo rojnamevanên çalak di warê civakî û azadiya raderbirrînê hatiye diyarîkirin, sala borî 2 rojnamevanên Kurd û Aşûrî bûne xwediyê xelata han.

Li gor agahiyên "Radio Farda"ê, qirar e ev xelata han di meha Çiriya Paşîn, li binkeya Şaredariya bajarê Siyena a Îtaliyayê ji malbatên wan du rojnamevanan re were pêşkêşkirin.

Îstîvano Maçêlî, avaker û birêveberê rêxistina han, derheq dana vê xelatê got: "Sedema sereke ya hilbijartina van du kesan ji bo xelata îsla ya Azadiya Rojnamevaniyê a Îtaliyayê, dijberiya me tevî biryara lidarvekirina wan du rojnamevanan û piştevanîkirin ji gelê Kurd li Kurdistana Rojhilat e ku herdem tên tepeserkirin. Navhatî her wiha qala vê çendê jî kir ku ew dixwazin hevalbendiya xwe tevî Kurdan xurttir û berfirehtir bikin.

# Endameke Kampayna Yek Milyon Îmzayan Li Kurdistanê Hate Girtin

Li gor rapora Nûçegihanê Rêxistina Parastina Mafê Mirovan li Kurdistanê, sibêdeya roja sêşem, 09.10.2007'an, xatûna **Ronak Sefarzade**, çalakê mafê jinan û yek ji endamên Kampayna Yek Milyon Îmzayan bona guhertina yasayan bingehîn a tejî ferq û cudahî ya Komara Îslamî ya Îranê li bajarê Sine hate girtin. Hêzên Ewlekarî yên rejîma Komara Îslamî ya Îranê piştî lêgerîna mala Ronak Sefarzade û komkirina hemû îmzayên kampaynê û dest bi ser de girtina "Hard"a kumpyoterê, navhatî ber bi îdareya Ewlekariya bajarê Sine birin û niha li wir hatiye binçavkirin.



Ronak Sefarzade, jina Kurd a çalaka mafê jinan li Kurdistanê

Hêzên Ewlekariyê bê nîşandana tu biryarekê, çûne nava mala wê û bi terzekî xirab û bêhurmetanê tevî malbatê wê tevgeriyan. Malbata Ronak Sefarzade tu zanyariyek li ser rewşa wê tu nin e.

# REWŞ

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Rewşa mirovahiya îroyîn dişibe rewşa kesên ku di ser pira siratê re derbas dibin e. Agirê şerê ku îro bi çarhêl û bêeman xwe li dora mirovahiya cîhanê rapêçaye, wekî agirê dojeha dadayî yê ku di bin pira siratê de gur û geş dibe. Wekî ku tê zanîn li gorî bîr û baweriyên olî, dê pira siratê, roja mehşerê ji bo hin mirovan bibe wekî balafirgeheke berfireh û dorhêl; û ji bo hin mirovan jî bibe wekî devê şûrekê ku bi qasî mûyekî zirav û her wiha mîna gûzanekê tûj û seqakirî ye. Tê gotin ku dê wê rojê kesên qenc û bawermend, wekî siwarên hespên rewan li bayê bezê, mîna berqtavên biharê di ser wê pirê re biqevizin; bihêsayî derbas bibin û reha bibin. Belê dê kesên xerab û tawanbar jî li ser devê wî şûrê ku mû diqelişe, bimeşin. Ji ber tawanbariya wan dê ew kes geh bikevin vî aliyê dojehê û geh jî aliyê din. Divê Xwedêgiravî bi ketin û rabûna wan re dê leylanên êgir ên wekî zîhayan(ejderha) wan daqurtînin; wan bihêrin û peyre wan bera bidin binê newalên dojehê yên reş û tarî û bêbinî.

Bêguman dojeh, bihûşt, mehşer sirat, siza û bexşanên wê dinê, hemû li gora pergal û sazûmanên vê dinê hatine sêwirandin. Lewre di dîroka mirovahiyê de dojeh û bihuştên ku bi destê hêzên zoran û desthialtdar hatine avakirin, di binehişîna mirovan de bi cih bûne. Dîsa li gora baweriyên olî, mirovên tawanbar her çi qasî nigaşên dojehê bînin ber çavên xwe û nigariyên wê yên tund çê bikin jî, dojeha ku dê roja meşherê bê dadan, qet neşibe wê dojeha wan a nigaşî. Çimkî dê dojeha rastîn sed carî ji wê dojeha nigaşî û nigarî dijwartir be. Îcar her çend ku îro em jî rûxan û texrîbatên şerekî nû bînin ber çavên xwe û wî bi awayekî neyînî rism bikin jî, ew şerê ku îro pêk were dê ji nigar û xeyalên şerê ku em disêwirinin, gellekî dijwartir û malwêrantir be.

Digel ku di dîroka civakên çîndar de gellek dojehên zindî û berbiçav pêk hatibin jî, desthilatdarên dinê dixwazin îro ji nû ve li Rojhilata Navîn dojehekê dadin û gelên herêmê bi carekê re bavêjin navê. Belê divê baş bê zanîn ku dê agirê wê dojehê pêşî kesên ku ew dojeh li dar xistine daqurtîne û wan ji eyarekî bixe eyarekî din. Çimkî cîhan, bi saya zanîn û teknolojiya nûjen bûye nola gundekî biçûk. Hêz û derfeta tu mirovan nîn e ku bikaribin xwe bavêjin devreyê sînorê vî gundî û xwe ji agirê wê dojehê xelas bikin.

Derketina şerekî biçûk an jî herêmî dê bibe sedema serobinbûna welatên derdor û lihevketina tevê dinê. Bi rastî îro roj destpêkirina şerekî herêmî ne tiştekî ketberê û hêsa ye. Çimkî şerê herêmê, dê bibe mîna agirê sor ê ku bi pûşê pirêzeyê dikeve, dê hemû welat û parzemînên dinê bide ber xwe û di laşê mirovahiyê de biçêre. Ji ber wê, tu mirovên xwedî hiş û raman an xwedî vîn û wijdan, nikarin bi hestên çîminjê tev bigerin û xwe ji vê berpirsiyarê bêrî bikin. Îro merc û asûnên dinê ji bo pêkanîna karesatên nû û her wisa komkujî û qirkirina mirovan gellekî guncan û kêrhatî ne. Îro çek û xumbereyên kujende yên ku bi destê mirovahiyê hatine çêkirin, pêkan e ku di hundirê çend xulekan (deqîqeyan) de bajarekî serobin bikin û bi sed hezaran mirovên bêrî tune bikin. Ev karesat û babelotên ku pêk tên, hovîtî, bêînsafî û bêwijdaniya desthilatdarên dinê li ber çavan radixe. Ji bo wê divê tu mirov ji dijmin û neyarên mirovahiyê hêvî û gumanê neke. Lewre ne gengaz e ku ew bikaribin arîşe û pirsgirêkên dinê çareser bikin. Lewre yên ku pirsgirêkan vê dinê bi destê xwe diafirînin, naxwazin pirsgirêkan çareser bikin. Jixwe sedem û egera hebûna wan jî ji bo pêkanîna arîşe û pirsgirêkên dinê ye. Pirsgirêka dinê ya herî tirsnak û erjeng desthilatdarî ye. Û dest hilatdarî şer bi xwe ye.

Hêrs û çavsoriya hêzên şerûd û êrîşkar bi hemû xofdariya xwe, tirs û saweke mezin dixe dilê kesên bêrî, mirovhez û aştîxwaz. Belê kes û aliyên ku hevalbendiya şer û hêzên şerûd dikin, dê berî herkesî ew bi xwe di nava dojeha şer de bixeriqin. Wekî ku li jor jî hate diyarkirin, tu kes nikare xwe ji ber agirê vê dojehê bide alî. Kêm zêde dê hemû kes Nesibê xwe ji xisar û texrîbatên şerê dinê hilde û agirê vê dojehê bitamîne.

Sersaxî

## Wêjevanê Mezin Yê Kurd, Mehmet Uzun Çû Ser Dilovaniya Xwe



Heyf û mixabin, seet 11:05'ê roja pêncşem, 11.10.2007'an, rewşenbîrê navdar û wêjevanê mezin yê Kurd, **Mehmet Uzun** li bajarê Amedê çû ser dilovaniya xwe û bo yekcarî xatir ji gel û welatê xwe xwest. Koça dawiyê ya romannivîsê Kurd Mehmet Uzun kul û keserek giran xiste nav dilê hemû evîndarên ziman, çand û wêjeya Kurdî û neteweya Kurd bi vê bûyera dilêş xemgîn û tazîdar bû.

Mehmet Uzun ewqas xizmet bi ziman û wêjeya Kurdî kiriye ku mirov nikare û nizane bi çi awayekê pesindayîna wî bike. Raste ku me Mehmet Uzun ji dest da, lê romanên **Siya Evînê**, **Hawara Dîcleyê** û **Ronî Mîna Evînê Tarî Mîna Mirinê** û berhemên din ên wî wek diyarî dê herdem bi gelê wî re bibin.

Mehmet Uzun sala 1953'an, li bajarê Rihayê ji dayîk dibe. Ji ber xebatên wî ên nivîsandina bi zimanê dayîkê çend caran ji aliyê desthilata Turk ve hate girtin û îşkencekirin. Her ji ber wan gefên li ser jiyana xwe neçar ma li havîna sala 1977'an li Turkiyê derkeve û heyameke dirêj li Swêdê ma. Ew endamekî çeleng ê **PEN** û **Yekîtiya Nivîskarên Swêdê** bû. Di jiyana xwe de, Mehmet Uzun heft roman û gellek ceribandin, lêkolîn û helbest nivîsandine û weşandine.



**Mehmet Uzun roja şemî, 13.10.2007'an, li Amedê bi beşdariya dehan hezar kesan hate veşartin**

Li sala 2005'an vegeriya Turkiyê û li bajarê Stenbolê ma. Di Gulana sala 2006'an hate zanîn ku Mehmet Uzun tûşî nesaxiya giran a penceşêrê bûye. Heta dawiya roja jiyana xwe(11.10.2007)'an, li destê wê nesaxiya giran dinaland. Termê pîroz yê wêjevanê Kurd Mehmet Uzun roja şemî, 13.10.2007'an, li Amedê bi beşdariya dehan hezar kesan hate veşartin.

**Desteya Weşana Agirî** koça dawî ya nivîskarê navdar yê Kurd Mehmet Uzun bi xisareke mezin ji bo neteweya Kurd dizane û xwe di xem û kovana ji dest çûna wî wêjevanê navdar ê Kurd şirîk û hevbeş dizane, her wiha sersaxiyê dibêje neteweya Kurd û behî û serxweşiyê dibêje malbat û kes û karên Mehmet Uzun. Riha wî şad be.

**Desteya Weşana Agirî**
**13.10.2007**

# Bîranîna Apê Mûsa Enter
## (1920-1992)

**Reşoyê Pîrê**

Li Kurdistana Bakur, herêma Mêrdînê, gundê Zivingê, di şikeftekê de, sala 1920'an, Mûsa Enter ji dayîk dibe. Mûsa ji êla Botan, milê Temikan, ji malbata Mihoyê Teze ye. Sê zarokên wî hene. Enter, Reşan û Dicle.

Mûsa xwendina xwe ya pêşîn, li Mêrdînê û ya lîsê li Enedolê kuta dike. Mûsa Ente, cara pêşîn li Enedolê tê girtin.

Ji bo xwendina zanîngehê, berê xwe dide Stenbolê, di şaxê edebiyetê, beşê hiqûqê de bi cî dibe. Di zanîngehê de, pir xwendekarên Kurdperwer dinase. Mîna Mustefa Bucak, Fayiq Bucak, Yûsif Azîzogju...Û bi hev re pir komelan dadimezrînin.

**1**- Pansiyona şagirtên Dîcle sala 1942'an. **2**- Komela Hêvî sala 1943'an. **3** – Komela rizgarkirina Kurdan. 4- Pansiyona şagirtên Firat sala 1948'an.

Mûsa Enter, di sala 1958'an de, dest bi weşanên xwe dike. Gotara yekemîn ya di bin navnîşana "Eman çi welatekî pêşketî ye" di rojnama " İleri Yurt" ya ku li Amedê derdiket, diweşîne. Di sala 1959'an de, gotarekê bi navnîşana "Qimil" di wan rojnamê de belav dike. Ji bo wê gotarê, Mûsa tê girtin. Piştî tê berdan, careke din tê girtin û berê wî didin Stenbolê, di oda 38'an de, şeş heyvan radikeve. Mûsa, di wê şeş heyvan de, pirtûka xwe ya yekem, ya bi navê "**BIRÎNA REŞ"** dinivîse. Di sala 1963'an de, bi Yaşar Kaya, Medet Serhat û Ergîn Koyncu re, **kovara Deng** diweşînin. Piştî du heyvan, conta Tirk, destê xwe didin ser kovarê û Mûsa Enter dixine girtîgehê. Di sala 1965'an Birîna Reş û di sala 1967'an de Ferhenga Kurdî diweşîne. Di 1969'an de, ji ber nivîsa xwe ya ku di rojnama "Dogo" de hatibû weşandin, careke din tê girtin. Di sala 1971'an de, ji hêla dadgeha Amedê ya contayê ve tê girtin û çar sal ceza didine wî. Piştî ji zîndanê tê berdan, di sala 1976'an de, Mûsa Enter vedigere gundê xwe û ta sala 1989 li wir dimîne. Di wê salê de, Mûsa vedigere Stenbolê. Li Stenbolê, kovarên "**2000, Dogru, Medya Gîneşî û Den"** Hevpeyvîn û nivîsarên Mûsa Enter diweşînin. Di sala 1990î de, pirtûka wî ya bi navê "**Hatiralarim**" ji hêla pirtûkxaneya "Doz" ve tê weşandin. Di wê salê de, partiya "**Keda Gel**" tê damezrandin û Mûsa Enter cihê xwe di nav refên wê partiyê de digre û dibe endamê komîta partiyê, ta qedexekirina partiyê ji hêla conta Tirk ve, karê xwe berdewam dike. Ji sala 1990'an, dema weşandina rojnama "**Yênî Ûlke**" ve, nivîsarên Mûsa Ente, her hefte, diweşîne, bilî nivîsarên wî, di rojnameyên **WELAT**, **TEWLO** û kovara **REWŞEN** de, têne weşandin. Di 20'ê Îlona 1992'an an de, kalemêrê 74 salî, Apê Mûsa Enter, ji hêla hêzên reş û tarî ve, li Amedê tê kuştin.



**Dostaniya** Yaşar Kemal û Apê Mûsa Enter, ji demeke dirêj ve ye. Wî di bîst û Sê saliya xwe de dinase. Dostaniya wan ta dawiya jiyana Apê Mûsa berdewam dike.

Piştî kuştina Mûsa Enter, Kemal nivîsarekê di der mafê wî de dinivîse. Ev nivîsar rojnama Tirk ya bi nav û deng "**Cumhoriyet**", di rojên 26-27'ê Şibata 1992'an de diweşîne. Emê hin parçeyên bijarte, ji wê nivîsarê pêşkêş bikin.

" ***Apê Musa Enter, di rojên reş û tarî de, herdem ronak, hêvîdar û bawermend bû. Civak û mirov, çiqas xerab be, wî herdem quncikekî rind û qenciyek tê de didît. Nêrîn û gotinên mirovan, li hember wî çiqas ters û sert bana jî; Wî bi çavekî nerim lê mêze dikir. Ew bi çanda gelê xwe pir bawermend bû. Bi hemî hêza xwe ve, li dijî wendabûna çanda gelê xwe disekinî û didît ku, çanda gelê xwe, ji çanda cîhanê re alîkar e. Ev bawerî, ta dawiya jiyana wî ajot û berdewam kir.. Ji ber baweriyên xwe ve, bi mêranî berxwe dida. Lewre jî hat kuştin. Kuştdar, an yên Apê Mûsa, dane kuştin, Tirkiyê jî xwerin, Anedol vegerandin gola xwînê. Ew kesan, xerabî û kuştina Tirkiyî dixwazin. Ev karê dîktetorên xwîndar in. Tirkiyê, divê neketa devê vê riyê. Em dikevin sedsala Bîst û Yekan, Ev leka reş di eniya me de, mirovatî napejrîne***".

Di vê nivîsarê de, Y. K. Dîsan dike qêreqêr û banga xwe dike welatparêz û welathezan, da ku vê kuştinê ji holê rakin "***Tirkiya û mirovatî, kuştina kevokên aştiyê, wek Mûsa Enter napejrîne. Ji ber , evqas sitem û piştî evqas xwînrijandin, lihevkirin pir zor e. Ez di bextê we da me, rê nêzîke , wext heye, ji bo xatirê xwîna yên wek Mûsa Enter, ji bo xatirê evîna biratiya hezar salan û ji bû bedewiya biratiya paşerojê, werin em vî karî çareser bikin, tiştekî ewqas dijwar nîne***".

Yaşar Kemal, nivîsara xwe bi van gotinan kuta dike: ***"Bi rastî, eger mirov bi qasî Mûsa Enter , ji welatê xwe hez bike – Eger demoqrasî hebe – emê ji vê astengê derkevin. Ji ber ku, baweriya min gelekî bi Mûsa Enterên vî welatî heye. Çi Tirk û çi Kurd be .***

***Bila bijî Mûsayên Enter , Apê Mûsa "***

Apê Mûsa Enter, di dîroka gelê Kurd de, mîna çiyayê Gewir nîşan dide. Û wê di jiyana gel de, herdem bi serbilindî bijî.

**Jêder :**

**1 - Kovara Rewşen. Hejmar 1 . Sal 1996**

**2 - Kovara Nûdem . Hejmar 7 . sal 1993**

## Doma Hevpeyvîna Bi Hunermend Aynur Doxan Re



tonmaîster û supervîzor û kesên pispor ên mûsîqê. Em jî mecbûrê mûsîqzanên Turkî ne. Lewra şerît û newarê me pîrnî di tema Kurdî de ne, lê hinek caran jî bêhna Turkî ji wan tê. Helbete ev tişt pirsa hemû hunermendên Kurd in. Ev jî bêçariyek mezin e. Lazimê konservwatûar û akademiyên Kurdî bêne danîn ku ev pirs çareser bibe. Eger dewlet neke jî, bi ya min beledyeyên Kurdî dikarin dest bavêjine tiştek weha û li ser vê pêşniyarê serê xwe bi êşînin.

**Xebatên we yên niha ji bo albumeke nû hebe em wê jî ragihînin xwendevanên xwe.**

Niha xebateke min ê amadebûyî tune ye. Lê ez li ser repertuwara xwe dixebitim û min niyet e ku ez kasetek baş û xurt amade bikim**:** Hê ev xebat ne gehiştiye. Ez baş dizanim ku bîzer û guhdarên min ji min tiştên baştir hêvî dikin. Lewra ye ku ez jî acelê nakim. Bi bêhna fireh wirde wirde ezê xebata xwe bidomînim. Wexta ku min bi xwe got **"erê temam. Êdî hevîrê me hazir e. Em dikarin bidne tenûrê."** wê demê emê bîr û raya Kurd ji xebata xwe a nû haydar bikin. Bi vê rêyê ez ji we û ji xwendevanê we re, hez û rêzên xwe pêşkêş dikim û ji were serkevtinê dixwazim. Serfiraziyê jî, ji hemû gelê me re hêvî dikim. Ez baş dizanim ku Kurd hewceyê tiştên baş in. Lewra divê mirov layiqî gelê xwe be. Divé gelé mirov bikaribe bi evladên xwe, bi taybetî jî, bi hunermendên xwe kubariyê bike.

### Hunermend Aynur Doxan:

# "Hunermend, Oksijena Miletan In"

**Hevpeyvîn/Letîf Epozdemir**

**Wekî destpêk hûn dikarin vê konferansê çawa binirxînin? Kêmasî li gor we çi bû û ji bo pêşerojê hêviyên we çine.?**

Pêş hemû tiştî lazime ku ez bêjim amadekirina konferansek wiha gellek girîng û ewqas jî, pêwîst bû. Lewra dibe ku civîna vê konferansê, hunermendên Kurd li hev nêzîktir bike û ev nêzîkbûyîn ber bi yekîtiyek ve bimeşe. Her wek tê zanînn, îro gellek pirsgirêk û kêşeyên muzîk û hunera Kurd hene û hemû jî, li benda çareserkirinê ne. Ji asîmîlasyon û pişaftin û talankirinê, bêguman musîq, ji hemû waran zêdetir para xwe distîne..Yên ku sitranên welatan çê dikin, ji wanên ku zagonên welatan çê dikin, hêjatir û birûmettir in. Ev gotinek pir binirx e. Lewra ye ku asîmîlasyoner ewil ji pişaftina muzîka Kurdî dest bi kar kirine. Dibe ku ev konferans bibin silsile û her tim dewam lê were û xal û halên asîmîlasyon û pişaftinê, ji ser sîngê mûsîqa Kurdî, were paqijkirin û malîştin. Konferans namzetê vê yeke bû , bi raya min.

Her weha Muzîka Kurdî gellek jar û zeîf bûye ji ber derb û zerbên biyaniyan. Wisan ku ber bi bê pênasiyê ve daketiye rê. Ev rê rêya xeter û nemanê, rêya xela û mirinê bûye. Ger xebatên weha bi nirx û akademîk nebin, bê şik muzîk tenê bi serê xwe nikare ji vê rêyê vegere. Kor û tîm û ekîbên lêkolîner dikarin di nav xwe de her kes li gor zanebûn û pisporiya xwe, kar û barên xwe dabeş bikin û bi hêz û xebatêk bijare wê muzîka ku niha sewse û hatiye tewşkirin carek din ji nû ve bi ser esl û astarê wê paşve vegerînin.

Ev hêvî min zêdetir heyecan dike û ez bawerim ku bi xizmet û xebatên wiha di zûtirîn wextek de dê gellek berhem û çalakiyên baş bi dest bikevin. Her weha ciyê şanaziyê ye ku êdî xweş halin ku desteyek bijare lêzan û agdarê muzîkê ji nav jenerasyona nû a Kurdan perwerde dibe.

Ji bo destpêkê ev konferans bi raya min serkeftî bû. Di hemû karan de kêmanî xuya dikin. Her weha ew kêmasiyê ku hatin dîtin, carek din dê nemînin û konferans û xebatên ayende, dê baştir û têkûztir bêne amade kirin. Ez bawer im ku dem û dezgeyên muzîka Kurdî çiqas zêde bibin, ewqas baş e û dê karê me hêsantir bikin. Lazime ku rojek zûtir muzîka Kurdî vegere ser koka xwe. Her weha taze aj bide û rabe ser pê. Vî karî jî, tênê korên xebatê, dem û dezgeyên wekî vê konferansê dikarin bidin hewil dan.

**Li gor we ji bo muzîka Kurdî bigihêje asteke giranbiha divê çi bê kirin?**

Ya rast îro jî Muzîka Kurdî geyîştiye astekî berz û bilind. Beramber bi dû, gellek gavên baş hatine avêtin. Ji roja ewil û hetanî îro muzîk kutahî bi jiyana xwe naniye. Lewra folklora Kurdî tenûr û kûreya musîka Kurdî bûye. û dengbêjên Kurd wekî bilbilên baxê beheştê, her sitriyane û ji ser lêvên xwe sitran û kilaman kêm nekirine hetanî îro. Di dîwan û hizûra mazin û mêvanan de her dem wekî şalûl û bilbilan destê wan li pala guhê wan bûye û xasima di wan şevên dirêj ên zivistanan de hetanî berê sibê qîriyane. Ev kevneşopiyek taybetî û serwetek hêjaye di destê hunermendên Kurd de ku dikarin pê kûbariyê bikin. Lewra şensek wiha di destê kêm hunermendên dunyayêdeheye. Sedem ku xezîneyek wiha giranbiha di destê me de heye, lazime em jê gellek îstîfade bikin. Reng û rûyê muzîkvan, çi be, bila bibe, divê ew ji kaniya folklora Kurdî dûr nebin û jê avê vexwin. Her huner li ser aqara xwe perwerde dibe û digêjê astên bilind.

Heyf û mixabin ku îro gellek hunermend û sitranbêj hene ku di nav şaşiyek mezin de ne û hertim bi wî alî, bi vî alî ve kaş dibin. Ew nizanin ka gelo çi bikin. Di nav aloziyek pênasî de ser û dilê xwe di êşînin. Lazime ku ew dev ji xwe kaşkirinê berdin û bi zûyî ve werne ser kaniya folklora xwe û tênîtiya xwe li wê bişkênin. Dê bibînin ku ew ê serfiraztir û dilşatir bibin.

Îro divê li gor sewtên nûjen ên dunyayê em jî muzîka xwe bi pêş ve bibin. Dengê me li




derveyê sînorên me jî bê bihîstin. Bizer dema ku guhdariya me bikin bizanin ku em Kurd in û ew sitranên li ser lêvên me berhemên folklor û çanda Kurdî ne. Ez li gor karîna xwe wezîfeyek weha dikim. Helbete bi min wisa xuya dike. Nizanim gelo ka bes e yan na.. ? Bê şik têne cehd û hewla min jî, ne bes e. Lazime gellek kesên din jî berê xwe bidne ser warê sewt û muzîka dunyayê. Lê li ser koka xwe tiştên nu nûjen biafirînin.

**Em dikarin bêjin hunermendên Kurd bi her awayî mafên ku divê bê dayin distînin. Hem ji aliyê gel, hem ji aliyê sazî û dezgehan û hem jî ji aliyê aborî?**

Bi rastî em îro nikarin bêjin ku yek hunermendê me jî, di hal û mercek baş de dixebite. Her wiha rewşa aborî û zirûfên civakî mixabe ku ne ligora xwesteka dilê me ne. Lewra em hunermendên miletek bindest in. Li her ciyekê dunyayê xebatên çandî û hunerî ji aliyê dezgeyên herêmî yan jî dewletî ve têne piştevanîkirin. Yanî huner siziyek bilinde û perwerdebuyîna huner jî lazime were paldan û ev kar hewceyê piştgiriya dewletê ye. Lê em xwediyê tiştek weha nînin. Lewra em hê jî sêwî ne li dunyayê û bê xwedîne. Lewra tenê kurd in ku li ser rûyê erdê nifusê wan ji 50 milyona zêdetir e û hêj jî, bê dewlet in.

Di halek weha de ne qabile ku em di hemû warên jiyanê de, di kar û barên hunerî de û di jiyana civakî de serfiraz û rûgeş bin. Tu dem û dezgeyek me tune ku nîşanên liyaqatê bide me. Em hunermendên gellekî bindest in ku zor caran sitranên me xewa nevana durevînin. Dê çawa ew qedrê me bizanibin. Tenê dimîne gelê me yê reben.. Ew di nav vê şerpezehî û bextreşiya xwe de dê bikare gelo çiqas me li ser desta bigre û qedr û qîmeta me bi parêze.? Yan jî jiyana me a aborî dê çawa bigihîjîne astek hemdemî di hal û mercek weha de.

Lê dîsa jî em ewqas gilîkar nebin baştir e. Eger têr û eger birçî, lazime ku em dengê sitranên xwe nebirin û her tim bi lorînin da ku rojên xweştir, bibînin. **Hunermend oksîjena gelên xwe ne**. Dema dengê hunermendan bê sekinandin, milketê wan nikare nefesê bistîne. Lewra em bi dil û can di her qonaxî de hewl didin ku nefesa gelê me neyê birîn. Hêvîdar im ku di demek kurt de rewşa hunermend û muzîkvanên Kurd dê baştir bibe.

**REWŞA MuzîkA KURDÎ YA ÎRO ÇAWA YE Bİ DÎTİNA AYNUR DOXAN. ?**

Lazime mirov bi zaniyariyên mûsîqa Turkî, mûsîqa Kurdî şirove neke. Lewra herdu ne yek tişt in. Her weha her yekek zirûfên xwe ên taybetî hene. Her yek ji wan di merc û aqarê xwe de perwerde dibe. Ev herdu ne berevajiyê hev in. Bi hemû şîweyan ji hev cuda ne û heta mirov dikare bêje ku ne cînarê hev in jî. Lewra zimanê herdukan jî her yek ji ciyek derbûye ku nêzîkî hev jî nînin. Dîsa raman û çand û folklor û zargotina herdukan jî jihev gellek dûr in. Sedem vê yekê, xeterên li ser rêya mûsîqê ji bo herduyan ne bi yek rengin. Yanî wekî ku tê qebûlkirin, Arabesk li ser rêya mûsîqa Turkî xeterek mezin e. Lê di nav muzîka Kurdî de hatiye hevîrkirin. Lewra êdî bûye parçeyek ji vê mûsîqê. Keza Pop, îro di mûsîqa me de hê ranebûye ser pê û hêdî hêdî xurt dibe. Bi guncan û îmkanên şexsî ne qabile ku zûtir geş bibe. Lewra berê hunermendên Kurd ê gellekan ber bi dunyayê ve ketiye.

Hunermendên me jî, hê bi sererastkirin û têkûzkirina xwe ve mijûl in. Zêde hayê wan ji muzîka cîhanê a îroyîn tune ye. Tenê ewên ku li derveyê welat dijîn ew hinekî nasyar in, lê bê gûman ev yek ne bes e. Lazime ku mirov li ser muzîka xwe zana û hosta be. Dema ku mirov şarezayê muzîkê be, mirov ji zimanê muzîkê fêm bike wê demê karê mirov rihettir dibe. Bi vê yekê mirov dikare li ser mûsîqa cîhanê jî, serê xwe biêşîne. Di vira de tîştê balkêş ew e ku divê mirov tu carî ji kevneşopiya mûsîqê veneqete û ji kok û reh û rişelên mûsîqa xwe a netewî dûr nekeve ango jê cuda nebe.

Îro êdî mûsîqa me jî, mîna hemû warên jiyanê li ser rêya raperîn û perwerde û pêşveçûnê ye. Ez jibo pêşerojê hêvîdar im. Lewra ji niha ve van îşareta distînim. Lazime ji başûr ve dest bi seferberiyê were kirin û bi zûyî mûsîq ji nav lepê dijwarî û xederayî bête felitandin. Lazime zêdetir akademî û enistîtuyên huner û muzîkê bêne çêkirin û li ser mûsîqa Kurdî zêdetir lêkolînan çê bin. Di radyo û televîzyona de zêdetir cih bidin mûsîqa kurdî û rêya geşbûna mûsîqê xweştir bibe. Televîzyonê û kanalên taybetî ên mûsîqa Kurdî bêne damezrandin û li ser mûsîqa Kurdî pispor li hev bicivîn, bernameyek ajdanê dirust bikin.

Her wek tê zanîn ku tu sazgehên fermî yan taybetî tunenîn ku pisporan perwerde bikin li ser mûsîq û torevaniya Kurdî. Ne bestekar û torevan û ristevan, ne aranjor û (***Dom R.10)***

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com

# Hejmar 3 Ya Pirtûka "Albuma Şehîdan" Derket



Hejmar 3 ya pirtûka **Albuma Şehîdan** kete pêşberî xwendevanên xwe. Albuma Şehîdan navê pirtûkekê ye ku 2 hejmarên wê îsal çap û belav bûn, di destpêka meha Çiriya Pêşîn a 2007'an, hejmara 3 jî derket. Di her 3 hejmarên pirtûkê de wêne, nav û paşnav, sal û cihê ji dayîkbûnê, bervar, cih û çawaniya şehîdbûnê û herwiha pileya rêxistinî ya şehîdên serbilind û birûmet ên xebata azadîxwazane û neteweyî ya PDK Îranê cih girtin.

Wekî her du hejmarên berê, naveroka hejmara 3, ji destpêkê û jiyan û serpêhatiya 3 rêberên şehîd **Pêşewa Qazî Mihemed**, **Dr. Qasimlo** û **Dr. Şerefkendî** pêk hatiye. Piştre di hejmara 3 û dawî a pirtûka Albuma Şehîdan de, şehîdên serfiraz û nemir ên Komîte Şaristanên **Seqiz**, **Sine**, **Hevşar**, **Merîwan**, **Hewraman**, **Dîwandere**, **Kamyaran** û **Kirmaşanê** hatine nasandin.

Hejmara 3 a pirtûka Albuma Şehîdan, bi bergeke rengî û balkêş hatiye xemilandin û 380 rêpel e. Beşa Şehîdan ya Komîsyona Civakî a PDK Îranê ev pirtûk berhev û weşandiye.

**Desteya Weşana Agirî**, bona encamdana vê xebata pîroz û hêja spas û mandînebûnê ji Amadekarên vê pirtûkê bona xizmet bi riha nemir a şehîdên birûmet ên tevgera azadiya Kurdistanê dike û ji wan re hêviya serkevtinê jî dixwaze.

# Li Sine Di Neştergeriyeke Serkevtî De Desteke Qetandî Bi Hev Hate Zeliqandin



Roja duşema borî, li nexweşxaneya Beset a bajarê Sine, di neştergerî (Operasyon)eke serkevtî de, bijîşkên vê nexweşxaneyê karîn destê zarokekî 9 salî ku li bûyera lihevketina otombêlê ji laşê wî cuda bûbû, dîsa ji bedena wî re hate zeliqandin.

Milê **Kavan Esedpûr** ku bi tevahî ji laşê wî cuda bûbû, piştî 8 seetan operasyonê, ji aliyê bijîşkan ve bi laşê wî hate likandin. Ev neştergeriye ji aliyê Dr. Mihemed Beyanfer û Dr. Hadî Beygfer bo cara yekemîn li Kurdistanê bi awayekî serkevtî hate endamdan.

Tê gotin ku Kavanê 9 salî niha li beşa ICU a nexweşxaneya Beset a bajarê Sine, di bin çavdêriya nojdaran de ye û xwîn di nav demarên milên wî de digere.

# Çend Xelatên Nobelê Yên 2007'an Hatin Ragehandin




Xelatên Nobelê yê îsal jî hêdî hêdî hatin ragehandin. Xelata Nobelê ya Wêjeyê a sala 2007'an dan nivîskara Îngilîzî "Doris Lessing"ê. Lessinga 88 salî bi pirtûkên xwe yên **Giya Stranan dibêje**, **Deftera Zêrîn** û gellek yên din ... tê nasîn. Li gor daxuyaniya Akademiya Zanyarên Swêdê, ji ber ku nivîskar "şaristaniyeke parçebûyî bi şikbarî, azwerî û xeyalan girtiye dest, tevgera jinan bi awayeke destankî aniye ziman" layiqî xelatê hatiye ditin. Di daxuyaniyê de hate gotin ku pirtûka wê ya Deftera Zêrîn ku di sala 1962'an de hatiye weşandin, derbarê têkiliyên jin û mêran a sedsala 20'an vegotiye.


*Xelatgira Nonelê ya Wêjeyê li Kurdistanê ji dayîk bûye*

"Doris Lessing" di sala 1919'an de li bajarê Kirmaşan a Kurdistana Îranê hatiye dinê. Dê û bavê wê Birîtanî bûn. "Lessing" dê ji bo xelatê 1.1 milyon Euro bistîne. Sala 2006'an Xelata Nobel ya Wêjeyê ji romannivîsê Turk, Orhan Pamuk re hatibû dayîn.

**Xelata Nobelê ya Tibê di nav 3 kesan de hate parvekirin**

Xelata Nobelê ya Tibê a 2007'an di nav 3 pispor û lêkolînvanan de hate parvekirin. "Mario R. Capecchi" û "Oliver Smithies" her 2 ji Amerîkayê û "Martin J. Evans" yê Birîtanyayî layiqî vê xelata mezin hatin dîtin.


"Al Gure"

Xelata Nobel ya Aştiyê a 2007'an jî bi awayekî hevbeş ji "Al Gure", Cihgirê Serok Komarê berê yê Amerîkayê û Komîteya Zanyaran ya Navneteweyî ji bo guhertina rewşa hewayê (Intergovernmental Panel on Climate Change) yan "IPCC" a ser bi Rêxistina Neteweyên Yekbûyî re hate dayîn.

# Gêzer Nexweşiyên Gurçîlk Û Mîzildanê Çareser Dike



Lêkolînên nû diyar kirin ku gêzer nesaxiyên demdirêj ên gurçîlk û mîzildankê çareser dike û kevirê gurçîlkan jî ji nav dibe.

Lêkolîna han eşkere dike ku gêzer madeyekê di xwe de cî dide ku jê re "Calsim Pectate" tê gotin ku rêjeya kulestrolê di xwînê de kêm dike û radeya potasyomê jî zêde dike.

Hêjayî gotinê ye ku gêzer xwediyê çavkaniyek girîng a karotînoyîdan e ku madeyên kîmyayî ne û mirov ji penceşêrê dûr dixe.